

Hevserokê BDPê Selahedîn Demirtaş:

**Hewldana Îsraîlê ne rast e û Kurd jî ne zarok in!** 10 / 11

3

"بەرپرسە گەندەڵەکان

بڕوایان نەدەکرد ڕۆژێک لە ڕۆژان لێکۆڵینەوەیان لەگەڵ دەکرێ"



Hejmar/Nr. 115
29 Îlon / September 2011

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

**Lîgên Tirkiyeyê, tîmên kurdan**

Di herdu lîgên jor de ti tîmeke kurd nîne, di yên jêr jî nû dilebitin 8

Bi navbeynkariya Herêma Kurdistanê

## Îran û PJAK li hev hatin

Piştî ku şerê di navbera Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê (PJAK) û leşkerê Îranê li ser sînorê Herêma Kurdistanê her ku çû berfirehtir bû û ziyanek mezin ya canî û malî gihişt xelkê li ser sînor, Hikûmeta Herêma Kurdistanê ket nav hewldanên navbeynkariyê. Yek ji gavên bingehîn yên vê navbeynkariyê serdana Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistanê (PDK) Nêçîrvan Barzanî bo Tehranê bû. Di encamê de Îran û PJAK li hev hatin, lê hîn jî mij li ser awayê vê lihevhatin ye, ji ber ku PJAK dibeje ew rasterast tevlî danûstandinê ligel Îranê bûne, Îran û berpirsên Herêma Kurdistanê jî vê yekê red dikin. 5

# Kurdistan kirin goristan

Piştî xebatên 2 salan, Komela Mafê Mirovan (IHD) a Amedê nexşeya gorên komî li Bakurê Kurdistanê eşkere kir. Encam: Di 253 gorên komî de cesedên 3.248 gerîllayên PKKê hatine binaxkirin. 3



**Çavsoriya li dijî Kurdan: Tirkiyeyê destê xwe dirêjî Palementoya Swêdê jî kir** ...9






2. Kongreya Koçberiyê ya Kurdî li Berlînê

# Nasnekirina nasnameya kurdî pirsgirêkek mezin e

**Berlîn (Rûdaw) -** Bi serperiştiya NAVENDê (Navend ji bo Lêkolînên Kurdî li Bonnê), roja 21ê Îlonê 2011, 2. kongreya migrasyonê ya kurdî li bajarê Berlînê li dar ket. Derdorê 100 pispor, siyasetvan, rojnamevan û mêvan di kongreya yek rojî de amade bûn. Di bin navê "Întegrasyon bi rêya Qebûlkirin û Tevlîkirinê" de, meseleya întegrayonê û pirsgirêkên Kurdên Almanyayê hatin nîqaşkirin û çendîn semîner hatin dayîn.

Di kongreyê de Serokê Daîreya Koçberî û Penaberan a Almanya (Bundesamt für Migration und Flüchtlinge) Dr. Manfred Schmidt jî amade bû, herwiha Wezîra Dewletê ji bo Koçberî û Penaberan, Prof. Dr. Maria Böhmer jî piştgiriya kongreyê dikir.

Encamek kongreyê ew bû ku nasnekirina Kurdan ji aliyê Hikûmeta Almanyayê weke gelekî serbixwe pirsgirêkek mezin e û dibe sedema gelek pirsgirêkên di nav Kurdên Almanyayê de. Prof. Dr. Ursula Boos-Nünnig jî bal kişand ser nebûna lêkolînên zanistî derbarê Kurdan de û pêwîstiya bi lêkolînên zanistî derbarê Kurdan de anî ziman, bi taybetî di warê pedagojîk de û li ser ciwan û zarokên Kurdan de.

Li gor beşdarvanek din ya kongreyê Dr. Daniel Müller jî, wêneyekî neyênî yê Kurdan di medya almanî de serdest e. Doktorantê zanîngeha Siegenê Mustafa Doymuş jî teza Dr. Müller piştrast kir û anî ziman ku Kurd di medya û zanistê de ji miletên Ereb, Tirk û Fars nayên cudakirin û li gor welatên ku ji wan tên, li ser gelê wî welatî tên hesibandin û ev jî pirsgirêkan bi xwe re tînê, bo mînak di lêkolînên zanistî de ku li ser bingehên şaş tên amade kirin.



Wêne: Rûdaw

## Çavê herkesî li ser 'Komkujiya Helepçeyê' bû

**Amed (Rûdaw) –** Forûma Civakî ya Mezopotamyayê di navbera 21-25ê Îlonê de li Amedê bi dirûşma "Wê azadî bi ser bikeve" pêk hat. Ji welatên weke Arjantîn, Ekvador, Brezîlya, Îtalya, Almanya, Rûsya, Misir, Tunus, Lubnan, Filistîn, Yemen, Îraq, Îran, Sûriye, Tirkiye, Ermenistan, Fransa, Kameron û Nîjeryayê bi sedan kes tevlî forûmê bûn. Ji Başûrê Kurdistanê jî 100 kes tevlî forûmê bûn. Di meşa destpêkê ya forûmê de Kurdistaniyan 33 metro pankarta ku li ser qurbaniyên Helepçeyê hebûn rakirin û "Komkujiya Helepçeyê" bi hemû biyaniyan dan naskirin. Bi sedan biyanî ku ji bo tevlibûna panel, semîner, konferans û çalakiyên cûrbecûr hatibûn forûmê, berê xwe dan cem Kurdên ku ji Başûr hatibûn û derbarê "Komkujiya Helepçeyê" de ji wan agahî xwestin. Balkêş bû hin biyaniyên ku çav dan wêneyên qurbaniyên li ser pankartê, hêstirê çavan barandin û diyar kirin ku cara ewil e ew komkujiya li ser Kurdan dibihîzin.

# Ji Ewropayê bo Kurdan du peyamên êrênî

Komîsyona Sivîl ya Ewropa-Tirkiyeyê, EUTCC, bang li Yekitiya Ewropayê kir ku navê PKKê ji lîsteya terorê derxîne û ji bo hevdîtinên aştiyane yê siyasî rê veke. Dîwana Dadê ya Ewropayê jî biryar stand ku Almanya nikare Roj Tv qedexe bike.

Komîsyona Sivîl ya Ewropa-Tirkiyeyê, EUTCC, ku ji aliyê kesayetên huqûqnas yên sivîl di sala 2004ê de hat damezirandin ji Yekitiya Ewropayê daxwaz kir ku ji bo çareseriya pirsgirêka kurd navê PKKê ji lîsteya terorê derxîne.

Di daxuyaniya EUTCC de tê gotin ku bi milyonan kes piştgiriya PKKê dikin, lê navê PKKê ji sala 2002yê heta niha di lîsteya YE ya terorê de ye û hîna jî nehatiye derxistin.

EUTCC herwiha daxwaz dike ku YE siyaseta xwe ya reşkirina PKKê bi dawî bîne, di şûna wê de, bi nûnerê PKKê re ji bo gavavêtinên erênî hevdîtinan pêk bîne.

Biryarek din jî derbarê Kurdan de hefta borî Dîwana Dadê ya Ewropa girt. Di biryara Dîwana Dadê ya Ewropa de qedexekirina Roj Tv ya li Almanya tê bi bîr xistin û tê gotin ku tenê hikûmeta Danîmarkayê dikare xebatên Roj Tv qedexe bide, ne welatekî din.

Wezareta Navxweyî ya Almanya di sala 2008ê de li himberê şîrketa danîmarkî "Mesopotamia Broadcast" bi sedema ku bi Roj Tv re kar dike, biryara qedexekirinê standibû. Şîrketa navborî jî serî li Dadgeha Rêvebirinê ya Federal ya almanî dabû û vê dadgehê jî daxwaz kiribû ku Dîwana Dadê ya Ewropa biryara dawî bide.







**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# Gorên komî: Kurdistan kirin goristan

**Amed (Rûdaw)–** Li gorî agahiyên ku Komeleya Mafên Mirovan (ÎHD) a Amedê berhev kir, li heta niha li Bakurê Kurdistanê 253 gorên komî hatine tespîtkirin û di van goran de cendekê 3 hezar û 248 gerîlayên PKK'ê hene. Rêveberên komeleyê xwestin gor li gorî prusedûrên protokolên navneteweyî bên vekirin.

Şaxa ÎHD'a Amedê ev 2 sal in li ser gorêm komî xebateke bi rêk û pêk dimeşîne. Li gorî agahiyên ku komeleyê berhev kir, li Bakurê Kurdistanê 253 gorên komî hatine tespîtkirin û di van goran de bi tevahî 3 hezar û 248 cendek hene. Komeleyê ji bo goran nexşeyeke înteraktîf a gorên komî amade kir. Li ser nexşeyan cihên gorên komî hatine îşaretkirin û kîjan gor li ku derê ye, bi awayeke zelal tê dîtin. Li gorî raporê hin ji van goran li kêleka deviyek, li devê çemek, di bin pirek, li lûtkeya çiyayek, li nêzî qereqoleke leşkerî, di baxçeyên qereqolên leşkerên tirk de ne. Di raporê de li gorî bajaran jî cih û hejmara goran tê nîşandin. Li gorî raporê li Amedê bi tevahî 30 gor hene û di van de 298 cendek hene. Li Sêrtê 36 gor, li Bedlîsê 35 gor, li Colemêrgê 33 gor, li Çewlikê 33 gor, li Wanê 18 gor, li Şirnexê 14 gor, hene. Her wiha li Êlihê 11 gor, li Mêrdînê 14 gor, li Dêrsimê 5 gor, li Elezîzê 3 gor, li Agirî 2 gor, li Îdirê gorek, li Erdexanê gorek, li Qersê gorek hene. Li bajarê Semsûrê jî gorek, li Meletiyê gorek, li Dîlokê gorek, li Rihayê 2 gor, li Hatayê jî gorek hene.



**Li ser nexşeya Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê cihên gorên komî**

**Gorên komî li gor bajaran (çavkanî: IHD)**

| LI GORÎ BAJARAN HEJMARA GORÊN KOMÎ Û KESAN | | | GORÊN KOMÎ KU HATINE VEKIRIN | | BI GIŞTÎ | |
|---|---|---|---|---|---|---|
| | HEJMARA GORAN | HEJMARA KESAN | HEJMARA GORAN | HEJMARA KESAN | HEJMARA GORAN | HEJMARA KESAN |
| AMED | 24 | 270 | 6 | 28 | 30 | 298 |
| SÊRT | 35 | 368 | 1 | 8 | 36 | 376 |
| BEDLÎS | 32 | 462 | 3 | 23 | 35 | 485 |
| COLEMÊRG | 33 | 347 | | | 33 | 347 |
| ÇEWLIK | 32 | 430 | 1 | 38 | 33 | 468 |
| WAN | 18 | 257 | | | 18 | 257 |
| ŞIRNEX | 12 | 199 | 2 | 5 | 14 | 204 |
| ÊLIH | 10 | 187 | 1 | 11 | 11 | 198 |
| MÊRDÎN | 13 | 91 | 1 | 7 | 14 | 98 |
| DÊRSIM | 3 | 245 | 2 | 14 | 5 | 259 |
| ELEZÎZ | 2 | 54 | 1 | 1 | 3 | 55 |
| AGIRÎ | 2 | 53 | | | 2 | 53 |
| ÎDIR | 1 | 14 | | | 1 | 14 |
| ERDEXAN | 1 | 19 | | | 1 | 19 |
| QERS | 1 | 7 | | | 1 | 7 |
| SEMSÛR | 1 | 17 | | | 1 | 17 |
| MELETÎ | 1 | 5 | | | 1 | 5 |
| DÎLOK | 1 | 10 | | | 1 | 10 |
| HATAY | 1 | 8 | | | 1 | 8 |
| RIHA | 1 | 15 | 1 | 1 | 2 | 16 |
| HÎZBULLAH | 10 | 54 | | | 10 | 54 |
| BI GIŞTÎ | 224 | 3058 | 29 | 190 | 253 | 3248 |


Wêne: Rûdaw
**Sekreterê ÎHDê Racî Bîlîcî**

**Protokola Mînnesota, heta niha ji aliyê 87 welatan ve hatiye îmzekirin. Lê dewleta tirk bi guman nêzî vê protokolê bû**

Heta niha 10 gorên ku Hîzbullahê çêkirine hatine dîtin û di wan de jî 54 cendek hatine derxistin.

### 'Protokola Mînnesota hate binpêkirin'

Sekreterê ÎHD'a Amedê Racî Bîlîcî, derbarê mijarê de agahiyên balkêş da. Bîlîcî, bal kişand ku gorên komî binpêkirina hiqûqa navneteweyî ye û wiha got: "Protokola Mînnesota, heta niha ji aliyê 87 welatan ve hatiye îmzekirin. Lê dewleta tirk bi guman nêzî vê protokolê bû û tenê hin xalên wê îmze kirin. Li gorî vê protokolê di demên şer de dema kuştin çêbûn, divê kesên hatine kuştin li gorî nîzamekê bên definkirin û hemû agahiyên wan ên nasnameyî bên qeydkirin û li hemberî miriya rêz bê girtin." Bîlîcî, xwest gorên hatine tespîtkirin jî li gorî pîvanên vê protokola navneteweyî bên vekirin.

### 'Gorên komî polîtîkaya dewletê ye'

Bîlîcî, bal kişand ku kesên hatine kuştin ji aliyê rayedarên dewletê û JÎTEM'ê ve bi awayeke li derveyî mirovahiyê hatine definkirin û wiha berdewam kir: "Êş û elema bi hezaran kesên bi awayeke kiryar nediyar hatin kuştin, hêj di dil û hinavên xizmên wan de zindî ye. Heta niha di van pevçûnan de 40 hezar kes hatine kuştin lê mixabin piraniya wan hêj cihê gorên wan nediyar e."

# YOKê perwerdeya bi kurdî pejirand

## Di Zanîngeha Artuklu de beşa kurdî hat vekirin û wê tê de 20 kes dest bi xwendina bi kurdî bikin




**Mêrdîn (Rûdaw) -** Saziya Bilind a Hîndekariyê (YOK), daxwaza Zanîngeha Artukluyê li Mêrdînê ya wergirtina 20 xwendekarên lîsansê pejirand. Di bin banê zanîngehê de Beşa Ziman û Wêjeya Kurd jî hate vekirin. Dewleta tirk ji bo ku kurdî bi awayeke fermî nexe zanîngehan, dema Zanîngeha Artukluyê vekir navê "Enstîtuya Zimanên Zindî" li beşê kirin. Digel ku zanîngeh ji bo perwerdeya bi kurdî hatibû vekirin jî, rayedarên hikûmeta tirk ji bo ku dewletê 'biçûk nexin" û li hemberî muxalefetê bikaribin xwe biparêzin, diyar kirin ku wan ev enstîtût ne ji bo kurdî, lê ji bo gelek zimanên din vekirine. Navê "Zimanên Zindî" di qada siyaseta kurd de jî hate rexnekirin û tevgera siyasî ya kurd a nêzî PKKê navê kesên ku biçin di wê beşê de bixwînin, xist nava lîsteya reş.



Wêne: Rûdaw
**Midûrê Enstîtuya Zimanên Zindî, Prof. Dr. Kadri Yildirim**

### Beşa ziman û wêjeya kurdî vebû

Lê piştî rexneyên 2 salan, Zanîngeha Artukluyê ji bo ku Beşa Ziman û Wêjeya Kurdî ava bibe û ji bo vê beşê 20 xwendekar bên wergirtin, serî li YOKê da. Biryara YOKê vê heftiyê gihişte ber destê rêveberên Artukluyê. YOKê mizgîniya kurdî da mamoste û xwendekarên kurd. Lewre di nivîsa YOKê de hemû daxwazên ji bo kurdî hatibûn qebûlkirin û beşa wêjeyê jî bi awayeke fermî hate vekirin. 20 kes wê dest bi xwendina bi kurdî bikin

Midûrê Enstîtuya Zimanên Zindî, Prof. Dr. Kadri Yildirim diyar kir ku wan ji bo lîsansê xwestibû ji 20 xwendekaran re kontenjan bê veqetandin û wiha axivî: "Ev daxwaza me ji aliyê YOKê ve hate qebûlkirin. Kesên ku lîse qedandine û tevlî azmûna OSYMê bûne, wê bikaribin bi pûanên xwe serî li me bidin. YOKê hêj bi zelalî ji me re negotiye wê ji kîjan cureyê puanan xwendekaran bigrin. Lê du îhtîmal hene; yek jê yên ku ketine azmûna zanîngehê ya ziman, wê di meha pêşiya me de tercîh bikin û bên. Îhtîmaleke din jî ev e; xwendekar wê bi pûanê devkî bên girtin. Ên ku îsal ketine azmûna zanîngehê, wê ji nava wan bên hilbijartin. Yên ku tercîh nekirine û yên ku neketine cihan jî hene, ew ê bikaribin serî li me bidin."

Dr. Yildirim xwest ku ev biryar pêşiya perwerdeya zimanê kurdî vebe û kurd bikaribin êdî bi zimanê xwe perwerdê bibînin.

## Goran du peyamên Barzanî wergirtin


Wêne: Rûdaw

Serokê Tevgera Goran Noşîrvan Mistefa ligel Serokê Herêma Kurdistanê

*Rûdaw* – Rêveberekî Tevgera Goran ragehand ku civîna navbera serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî û serokê Tevgera Goran Noşîrwan Mistefa gelekî erênî bû, herwiha got jî ku serokê Herêma Kurdistanê du peyamên serekî gihandin û Noşîrwan Mistefa jî soz daye ku hevkar be.

*Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di serdana xwe de bo Silêmaniyê û Germiyan, ku di roja 20.09.2011 de saz kir, li avahiya Parka Azadî ya Silêmaniyê amadeyê daweteke Goran bû. Dûre dema zêdeyî saetekê bi tenê Barzanî û Noşîrwan civiyan. Lê hevdîtin li ser daxwaza Barzanî bû.*

*Çavkaniyeke bilind û agahdar ji Tevgera Goran ku nexwest navê wî bê gotin, qala naveroka civînê ji Rûdawê re kir û got: "Serokê Herêma Kurdistanê soz da ku wan 4 biryarên li ser daxwaza opozisyonê hatine derxistin bên bicihkirin, ew kêşeyên ku vêga li ser qada siyasî ya Herêma Kurdistanê hene bên çareserkirin. Wekî din jî Noşîrwan Mistefa soz daye ku hevkarê serokê Herêma Kurdistanê be bona cîbicîkirina van biryaran û gavên reformê."*

*Çavkaniya Tevgera Goran herwiha got ku Barzanî di vê civînê de du peyam dane Noşîrwan Mistefa: "Ya yekemîn, gava got ku Nêçîrvan Barzanî serpereştiya projeya reformê û cîbicîkirina her çar biryarên serokayetiya Herêma Kurdistanê dike, wî dixwest bêje ku di nav PDKê de dubendî tune û me jî ew fêm kir. Peyama duyemîn a Barzanî ew bû ku di serpereştîkirina Nêçîrvan Barzanî de bona projeya reformê, ku eger rewş aram bibe, êdî PDKê hikûmetê digire destê xwe û Nêçîrvan Barzanî dibe serokê Hikûmeta Herêma Kurdistanê."*

# Kurd di xwepêşandanên Sûriyê de ne bêdeng in



Siyasetmedarên kurd dibêjin herêmenên kurdan qet bêdeng nemane û xwepêşandan her diçe zêdetir dibin û Kurd beşekî serekî yê şoreşa Sûriyê ne

**Besam Mistefa**

Dihat çaverêkirin ku Kurdên Rojavayê Kurdistanê berî herkesî li dijî rêjîma Beşar Esad tevlî şoreşa gelê Sûriyê bibin, ku di 15ê Adarê bajarê Deraa li başûrê Sûriyê destpê kir. Lê heya niha tevî berdewamiya xwepêşandanên ciwan û hinek partiyên kurdî, hê jî xwepêşandanên girseyî û seranserî li deverên Kurdan çênebûne. Lê siyasetmedarên kurd dibêjin "Xwepêşandan li deverên kurdan her diçe zêdetir dibin û Kurd beşekî serekî yên şoreşa gelê Sûriyê ne."



### Endamê serkirdayetiya Partiya Yekîtiya Demokrat ya Kurd li Sûriyê Mehmûd Mihemed: Em di nava şoreşê de ne, ne li pêş in û ne li paş in

Endamê serkirdayetiya Partiya Yekîtiya Demokrat ya Kurd li Sûriyê Mehmûd Mihemed bo Rûdawê ragehand ku ligel hinek kes dibêjin ku tevgera kurd ya siyasî li Sûriyê li paş maye û ne tevlî şoreşê ye, lê "Bi dîtina min ji roja yekemîn ya şoreşa gelê Sûriyê, helwesta tevgera kurd diyar e ku dibêje em beşek in ji vê şoreşê û em bikaranîna çekên zindî dijî xwepêşanderan protesto dikin û em dixwazin xwepêşandan bi aştiyane bin û mezin bibin."

Derbarê wê yekê ku li gor navçeyên din yên Sûriyê, li navçeyên kurdî xwepêşandan kêm in û hejmara xwepêşanderan ne zêde ye jî, Mehmûd Mihemed got: "Niha roj bi roj xwepêşandan li herêmên kurdan zêdetir dibin û eger hinek dibêjin ji deverên dî yên Sûriyê kêmtir Kurd derdikevin, bi baweriya min eger em bên ser hejmara danîştvanên herêmên kurdan û navçeyên din, qet xwepêşandanên deverên kurdan ne kêmtir in ji yên din û roj bi roj zêdetir dibin. Berê heftane bûn, vêga bûne rojane, berê bi roj bûn niha bi roj û şev in, lewra Kurd şirîkên vî welatî ne, şirîkên her tiştî ne, çi xwepêşandan bin û çi jî dahatûya Sûriyê."

Navbirî mikur tê ku tevgera kurdî heya niha biryara ku Kurd bi hevre dakevin kolanan nedaye, lê dibêje: "Em hevsoz û hevbendên ciwanên kurd û hevrêziyan e yên ku xwepêşandanan dikin. Dirûşmên tevgera kurdî û hemû kesên ku xwepêşandanan dikin yek in, lê gazinên ku tên kirin çima Kurd jî nayên kuştin, bi baweriya min ev jî siyaseteke rêjîma Baasê ye, ku herdem dixwaze nebaweriyê têxe navbera Kurdan û netewe û pêkhateyên din yên Sûriyê. Du armancên Baasê ji vê siyasetê hene, yekem: metirisî heye ku li herdu paytextên aborî û siyasî yên Sûriyê Heleb û Şamê ku heya niha weke tê xwestin beşdarî şoreşê nebûne, lê eger komkujî li herêmên kurdan jî çêbûn, ew jî wê rojane derkevin ser cadeyan ji ber tecrûbeya me ya 2004ê berçav e, duyem, komkujiyan nakin di herêmên kurdan de ji ber xatirê ew nebawerî çêbibe di navbera Kurd û pêkhateyên din yên Sûriyê de û herwiha di navbera Kurd û tevgera wan ya siyasî de."

Di 15ê Adara 2011ê de, xwepêşandanan li Sûriyê destpê kir. Li gor UN û saziyên mafên mirovan yên Sûriyê û biyanî, heya niha zêdeyî 2770 kes hatine kuştin, 10 hezar kes hatine girtin û bi hezarên kes koçber bûne. Lê li deverên kurdan hê kuştin çê nebûye. Hejmara xwepêşanderan jî ne zêde ye weke deverên din.

Serokê Partiya Yekîtiya Demokarta Kurd (PYD) ê Mihemed Salih Muslim bo Rûdawê diyar kir ku xwepêşandanên navçeyên kurdan weke berê berdewam in



### Serokê PYD ê Mihemed Salih Muslim: Xwepêşandan li deverên Kurdan zêde bûne

û got: "Xwepêşandan weke berê berdewam dikin, li deverên kurdan ji roja yekê û heya vêga jî didomin. Kêm jî nebûne, lê dibe ku zêde bûbin. Herwiha li hemû bajaran hene û bi şev û roj in."

Serokê PYDê ragehand ku wê li Sûriyê guherîn çêbibe û got, "Eger hêvî bi rêjîmê hebûya ti çalakî û meş nedihatin lidar xistin. Qet ne mimkûn e hemû alî vegerin berî 15ê Adarê. Li bajarên kurdan çalakî û meş berdewam in, di baweriya min rewş berbi xerabiyê ve diçe, berbi şerê navxwe diçe."

Weke bersiva pirsiyara Rûdawê ku ji ber çi heya niha tevgera kurdî biryara beşdariya girseyî û seranserî nedaye, Muslim wiha axivî: "Partiyên erebî jî biryareke siyasî û eşkere ya beşdariya mezin dijî Esad nedane. Herkes derdikeve kolanan, lê biryareke wiha nehatiye standin. Em 4 partiyên kurd tevlî heyeta tensîqa niştimanî bûne, ku armanca wê guherandina rêjîmê ye, meseleya me ne bi kesekî ve girêdayî ye, kesayetî ne pirsgirêka me ye, weke Lîbya serokkomar ket, lê rêjîma wî hê berdewam e û şer dike. Divê eser û siyasetên rêjîmê li Sûriyê ji 1963 û heya niha ji holê bê rakirin."

Rêjîma Sûriyê heya niha li deverên kurdan siyaseta berdana bombeyên rondikrêj û girtin û îşkencekirin û tirsandina Kurdan peyrew dike, lê hê jî bi awayekî berfireh weke deverên din kuştinê nake. Şehîdên kurdan heya niha leşkerên kurd in ku li leşkeriyê tên kuştin, herwiha li Şamê jî berî demekî 5 Kurd hatin kuştin.



### Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Îsmail Heme: Rêjîm ditirse eger li Kurdan bide, wê civaka navnetewî desttêwerdanê bike

Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê Îsmail Heme red kir ku xwepêşandan li deverên kurdî kêm bûbin û got: "Xwepêşandan zêde dibin û kêm nabin, hejmara xelkê jî zêdetir dibe, dibe ku li hinek deveran hinek rojan ji ber rewşên taybet kêmanî çêbibe, lê bi awayekî giştî û li bajarên mezin weke Qamişlo zêde dibe û kêm nabe."

Heme tekez kir ku partiyên kurd weke Azadî, Yekîtî, Şepêla Pêşerojê ji roja yekem ve biryara xwe ya beşdariyê di meş û xwepêşandanan de dane, lê got, "Rast e hinek partiyan hê biryara xwe ya dawî nedane ku tevlî xwepêşandanan bibin." Navbirî wiha axivî: "Gotinek heye ne rast e ku dibêjin li deverên kurdî qelsiyek heye, lê xelk derdikevin. Rêjîm ditirse eger kuştin û anîna leşker û artêşê bo deverên kurdî çêbibe, Kurd li seranserê Sûriyê û hemû deverên cîhanê jî rabin ser piyan û ev yek bibe sedemê desttêwerdana civaka navdewletî, tirsa rêjîmê ya mezin ji vê yekê heye."

# Bi navbeynkariya Herêma Kurdistanê, Îran û PJAK li hev hatin

Hîvîdar Ehmed Hewlêr

Lihevhatina ku bi navbeynkariya Herêma Kurdistanê di navbera Komara Îslamî ya Îranê û Partiya Jiyana Azad a Kurdistanê (PJAK) de hatiye pêkanîn, hêjî di bin mijê de ye. Tevî ku Îran û Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêdagiriyê ser wê yekê dikin ku tenê Tehran, Bexda û Hewlêr aliyên wê lihevhatinê ne, lê berpirsên PJAKê behsa rûniştinên rasterast ên PJAKê ligel Îranê dikin û dibêjin ew ê di dahatûyekî nêzîk de hûrkariyan belav bikin.



### Îran: Em hêzeke naskirî li ser sînoran dixwazin

Konsolê Giştî yê Komara Îslamî ya Îranê li Hewlêrê, Seyid Ezîm Husênî, bo Rûdawê got ku ew ligel Bexda û Herêma Kurdistanê gihane "çareserkirineke cihê razîbûnê" bo nehiştina aloziyên ser sînor. Husênî dibêje ku di navbera wan, Îraq û Herêma Kurdistanê de lihevtêgihiştin pêkhatiye "derbarê ku her aliyek erkên xwe cîbicî bike û asayişa sînorên xwe biparêze."

Husênî derbarê erkên Herêma Kurdistanê yên piştî wê lihevhatinê got "Erkê ku dikeve ser Herêma Kurdistanê pêgîriyeke navnetewî û yasayî ye, pêwîste hêzeke çekdar a fermî ya girêdayî Herêma Kurdistanê li ser sînoran bi cih bibe. Mesela çawaniya cîbicîkirina vê dikeve ser milê wan bi xwe, ka ew ê hêzên Pêşmerge bicihbikin, yan wê ligel Bexda li hev bên ku hêzên Zêrevanên Sînor bên bicihkirin, ev mijareke wan a hundirîne." Husênî herwiha got "tiştê ji bo me girîng ewe ku li himberî me li ser sînor aliyekî fermî hebe, nasnameya wan diyar be û em bizanin ew kî ne."

Konsolê Giştî yê Îranê herwiha red kir ku wan gotûbêj ligel PJAKê kiribin û PJAK aliyekî vê lihevhatinê be û got "lihevhatina me ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye." Lê PJAK axaftineke din dike.

Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Tehran, Nazim Debax, jî bi heman şêweyî red dike ku rûniştinên rasterast navbera Îranê û nûnerên PJAKê bi amadebûna Hikûmeta Herêma Kurdistanê pêkhatibin: "Heta niha di navbera PJAK û Îranê de bi amadebûna Hikûmeta Herêma Kurdistanê ti civîn çênebûne, lê rawestandina şer û pevçûnan navbera PJAK û Îranê bi navbeynkariya Herêma Kurdistanê pêk hat. Ev hemû jî piştî wê yekê hat ku Nêçîrvan Barzanî bi serokatiya şandeke Herêma Kurdistanê çû Îranê, da pirsgirêka navbera PJAK û Îranê û bandora wan li ser Herêma Kurdistanê bi rêyên aşîtî çareser bibin."

Berpirsekî haydar ê Hikûmeta Herêma Kurdistanê got ku ev lihevhatina navbera PJAK û Îranê de bi navbeynkariya Herêma Kurdistanê pêk hatiye û herdu alî jî li ser wê yekê qayil bûne ku hêza Pêşmergeyan biçin ser sînoran.

Ew berpirsê mezin ku haydarê hûrkariyên wan gotûbêjan bû bo Rûdaw got "Lihevhatineke destpêkî çêbûye ku ji vir û şûn de hêzên PJAKê çalakiyên xwe yên dijî Komara Îslamî rawestînin û êdî gerîllayên wan neçin aliyê din ên sînorê Îranê. Îranê jî li himber de topbarana navçeyên sînorî yên Herêma Kurdistanê rawestandiye û ev nêzîkî 10 rojane herdu aliyan êrîş dijî hevdu encam nedane." Wî berpirsyarê ku nexwest navê wî eşkere bibe got "li gor wê lihevhatinê hêza Pêşmergeyan her dema ku ferman bo wan derket wê biçin.

### "Ev lihevhatina baş encama serdana Nêçîrvan Barzanî bû"

Wî berpirsekî Hikûmeta Herêma Kurdistanê herwiha got jî, Îranê dixwest êrîşên fireh ên leşkerî pêk bîne, lê serdana Nêçîrvan Barzanî bi nûnertiya Serokê Herêma Kurdistanê bû sedema ku Îran êrîşan neke û pişt re topbaranê jî rawestîne.

Partiya Jiyana Azad a Kurdistan (PJAK) got agirbest û paşdekişîna ji Girê Casûsan û eniya şer li gor lihevhatin û lihevtêgihiştina ligel Herêma Kurdistanê pêk hat. Herwiha amaje didin wê yekê jî ku di wê çarçovê de rûniştinên wan ên rasterast ligel rayedarên Îranê jî hebûn.

Berpirsê Têkiliyên PJAKê, Dr. Seyidxan, di vê derbarê de bo Rûdawê got "me bi navbeynkariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê agirbesta himber Îranê îlan kir û em hêvîdar in ku Îran jî wê agirbestê li ber çavan bigire û pirsgirêka kurd li Îranê çareser bike, ji ber ku hem Îran û hem Kurd jî wê sûdê jê bibînin."

Dr. Seyidxan herwiha got "bêguman ev lihevhatin ji encama serdana Cîgirê Serokê Partiya Demokrat a Kurdistan Nêçîrvan Barzanî bo Tehranê bû, em jî dibînin ku lihevhatin baş e." Wî berpirsê PJAKê got ku ew Hikûmeta Herêma Kurdistanê weke destkeftiyekî mezin bo Kurdên hemû perçeyên din ên Kurdistanê dibînin, herwiha ew Parlemana Kurdistanê jî weke saziyeke ku nûnertiya her çar perçeyên Kurdistanê dike dibînin."

### PJAK: Hevdîtiyên me yên rasterast ligel Îranê hebûn

Berpirsê Têkiliyên PJAKê derbarê wê yekê ka gelo civînên wan ên rasterast ligel rayedarên Îranê hebûn, got "em ê di rojên dahatî de daxuyaniyeke fireh bo raya giştî eşkere bikin, derbarê hevdîtin û hemû ew hewlên hatine dayîn bo aramkirnina vê rewşê." Wî herwiha got "belê hevdîtinên me yên rasterast hebûn."

Tevî ku rayedarên Herêma Kurdistanê dibêjin ku li gor wê lihevhatinê hêzên PJAKê wê hemû karên xwe yên leşkerî di nava xaka Îranê de rawestînin, lê Dr. Seyidxan ew yek red kir û got "ev hizirkirineke şaş e, em hêzeke Rojhilata Kurdistanê ne û gerîllayên me li çiyayên Şaho, Mako û Dalaho ne. Em dema li navçeyên sînorî bêdeng dibin, tenê ji ber wê yekê da em hêncetan nedin Îranê ku gundên ser sînor topbaran bike."

Dr. Seyidxan got ku heta niha meseleya bicihkirina hêzên Pêşmergeyan li wan cihên ku berê ew lê bûn, ligel wan nehatiye behskirin û got "me xwe ji wan navçeyan kişand û me dan destê PKK`ê, ew dikarin ligel wan biaxivin."

### Hêzên PKKê li cihên PJAKê bi cih bûn?

Endamê Lîjneya Têkiliyên Derve yên PKKê, Roj Welat jî got ku piştî paşdekişîna hêzên PJAKê ji Casûsan hêzên PKKê li wir bi cih bûne.

Roj Welat ew yek jî bo Rûdaw got ku "çûna hêzên PKKê bo Casûsan bi lihevhatina navbera Îran, PJAK û PKKê bû, herwiha Herêma Kurdistanê jî bi vê lihevhatinê haydar e." Wî herwiha got "Casûsan xaka sînorê navdewletî yê Îranê ye û niha hêzên PKKê di nava xaka Îranê de ne li Casûsan."

Lê Berpirsê Têkiliyên Derve yên Partiya Karkerên Kurdistan (PKK) Ehmed Denîz wê yekê red dike ku hêzên PKKê piştî paşdekişîna hêzên PJAKê ji Casûsan, cihê wan girtibe. Ew derbarê çawaniya çûna hêzên PKKê bo navçeya Casûsan dibêje "em ê paşê helwesta xwe ya derbarê mesela Casûsan eşkere bikin."

Ehmed Denîz herwiha got "hêzên PJAKê piştî ku li hev hatin, ji Casûsan paşde hatin kişandin, Casûsan ket bin destê leşkerê Îranê." Deniz herwiha got "kontrolkirina Casûsan ji aliyê Îranê bi lihevhatina di navbera PJAK û Îranê pêk hat."

## Şirove

### Hevdîtinên PKK-MITê

**Ahmet Dere**

Ev du hefte ye di çapemeniya kurd û tirk de derbarê hevdîtina PKK-MITê de pir nivîs hatine weşandin, niqaş têne kirin. Di encama van niqaş û hemû nivîsan de rastiya derketiye holê ew e ku çi ji aliyê raya giştî ya tirk de be û çi jî ji aliyê raya giştî ya kurd de be, çawa dibe bila bibe, hewldanên ji bo rawestîna şer dikare piştgiriya girseyan bigire. Ev weke merheleyekê nû ye û hêviyan diafirîne.

Di servisîvê de min gotiye «hevdîtinên», ji ber ku ev ne cara yekem e ku di navbera PKKê û rayedarên saziyên ewlekariya dewleta tirk de hevdîtin çê dibin, heya niha pir caran dan û standin çêbûne. Lê belê, mirov dikare vê hevdîtina ku bûye mijara gotinê weke gaveke destpêka pêvajoyeke nû bibîne. Hevdîtinên ku dema borî pêkhatin nebûne mijara niqaşan û ew ji raya giştî hatine veşartin.

Hikûmeta AKPê hevdîtina PKK-MITê înkar nekir. Lê belê heman hevdîtinê, an jî hevdîtinan, weke xebata asayî ya saziya MITê dan nasandin û li serokê MITê Hakan Fidan xwedî derketin. Çendî di dema ku hevdîtin pêkhatî de Hakan Fidan alîgirê musteşarê serokwezîriyê be jî, heman xebat di bin berpirsyartiya MITê de pêk hatiye û tevlêbûna Hakan Fidan jî weke parçeyeke heman saziyê bûye. Dema ku mirov pozisyona Hakan Fidan ya vê demê digire bar çavan, baş dixûyê ku ew bi armanca xweperwerdekirinê beşdar bûye. Lewre, ez nikarim bêjim heman hevdîtin di navbera PKK û hikûmetê de pêk hatiye.

Tê zanîn ku ji 16ê Tebaxê vir ve dewleta tirk şerekê awarte li dijî hêzên PKKê dimeşîne. Li gorî daxûyaniyên rayedarên hikûmeta AKPê, di demekê kurt de we opêrasyona bejayî li dijî hêzên PKKê yên li Başûrê Kurdistanê pêk were. Herweha tê dîtin ku ji mehekê vir ve bi sedan rayedarên BDPê, di nava wan de serokên şaredariyan jî hene, hatine girtin. Dema ku mirov van kiryarên dewleta tirk dibîne, baş tê fêmkirin ku hevdîtinên ku heya naha bi PKKê re pêk hatî tenê bi armanca têkbirina hêza gelê kurd bûn in.

Di çapemeniya kurd de (bi taybetî di hin malperan de), derbarê heman hevdîtinê de nerazîbûna hin derdoran tê dîtin û daxwaza guftûgoyên eşkere tê ziman. Ez bixwe jî wisa difikirim, divê hemû guftûgo bi awayekî vekirî pêk werin, daku raya kurd (herweha ya tirk jî) bikaribe encamên wan bişopîne. Eger wisa nebe, mirov nikare ji heman hevdîtinan, an jî çawa ku hin derdor dibêjin, ji heman guftûgoyan tiştekê hêvî bike.

Di encamê de ez dixwazim vê jî bêjim; qasê ku min ji tomara dengê weşandî fêm kir, di hevdîtina mijara gotinê de zimanekî dîplomatîk û herweha yê guftûgokirinê nehatiye bikaranîn. Dibe ku tomara deng bi zanistî hatibe amade kirin, lê belê di yê ku hatî weşandin de mirov bi awayekê pir zêde serdestiya rayedarên MITê hîs dike. Lewma pirr pêwîst e ku hêzên kurdan xwe ji guftûgoyan re baş amade bikin û di hevdîtinan de serdestiyê nedin heyeta dewletê. Ev jî dikeve asta mijareke perwerdeya siyasî û dîplomatîk.

# "Wezareta Derve ya Swêdê radestî daxwaza Tirkiyeyê bû"



## Evîn Çetîn: Tirkiyeyê terora xwe gihand heya nav sînorên Swêdê jî
## Gulan Avci: Dewleta Tirkiyeyê kampanyayek reşkirinê li hember min meşand

**Stockholm (Rûdaw) -** Li ser daxwaza dewleta Tirkiyeyê, Wezareta Derve ya Swêdê navê endama Partiya Gel a Swêdê, Gulan Avci, ya ku bi eslê xwe kurd e, ji nav bernameya semînerek derbarê jinan de li Parlemena Swêdê derxist û nehişt beşdarî semînerê bibe. Gulan Avci berê parlementera Swêdê bû.

Her sal li Parlementoya Swêdê çalakiyek ku parlementerên tirk, swêdî û saziyên mafên jinan beşdar dibin tê li dar xistin. Îsal jî bi alîkariya maddî ya Swêdê ev çalakî bi navê "Demokrasî û mafê jinan" di 21-22/ 9/2011ê de hat li dar xistin û parlementera swêdî ya berê Gulan Avci jî wê beşdarî semînerê bibûye, lê piştî destwerdana Tirkiyeyê navê wê ji bernameyê hatibû derxistin.

Ev civîna ku tê de bi taybetî li ser rewşa jinan ya civakî, siyasî, aborî tê munaqeşe kirin, ji hemî partiyên tirkî û swêdî gelek beşdarvanên jin yên parlementer û saziyên jinan lê başdar dibin. Tevlî ku beriya bi sê mehan navê Gulan Avci, ya ku wê semînera "Demokrasî û mafê jinan" bidaya, hatibû nivîsîn jî, beriya civînê bi sê rojan berpirsekî bilind yê konsolosxaneya swêdî li Stenbolê, bi navê Torkel Stjernlöf, telefonî wê dike û dibêje: "Bi biryara rayedarekî bilind yê wezareta derve tuyê beşdarî vê semînerê nebî û navê te ji bernameyê hatiye derxistin."

Gulan Avci ya ku ji bo pêşnûmeya pêşniyaznameya komkujiya Ermeniyan di Parlementoya Swêdê de were pejirandin rolek mezin lîstibû, helwesteke tund nîşan da û di vê derbarê de gotarek nivîsî û li rojnameyên Swêdê belav kir. Rûdawê xwe gihand Gulan Avci û li sedemên derxistina wê ji bernameyê pirsî. Gulan Avci wiha bersiv da: "Beriya her tiştî ez jineke kurd im. Û ya din jî, ez yeke xwedî helwest im û rexneyê li polîtîkayên şaş dikim. Dema ku ez li parlemento bûm min rolek mezin lîst ku pêşnûmeya biryara qirkirina Ermeniyan were qebûl kirin. Li ser vê yekê dewlet û çapemeniya Tirkiyeyê kampanyayek reşkirinê ya mezin li hember min da meşandin. Ew ditirsin ku ez biaxivim, loma asteng kirim. Ev bûyereke mezin e. Beriya bi çend rojan Wezîrê Derve yê Swêdê Carl Bildt telefonî min kir û got 'bibore, diviyabû ev bûyer neqewimîbaya û navê te ji bernameya semînerê nehatibaya derxistin û diviyabû tu beşdar bûbaya.' Qîmetê vê lêborînê tune ye, ji ber ku ti feyda wê tune ye. Divê ku çanda demokrasiyê ya Swêdê nekeve nav piyan û qîmeta wê were zanîn. Ev çalakî bi pereyên Swêdê hate li dar xistin, çawa dibe ku dewleta Tirkiyeyê bikare biryaran li ser civînê û siyasetmedarên wê bidin? Ev bûyer derseke mezin e ji bo Swêdê, hêvî dikim

> **Bi biryara rayedarekî bilind yê wezareta derve tu beşdarî vê semînerê nabî û navê te ji bernameyê hatiye derxistin.**

ku bibe sedema nêrîneke rexnegirî li ser polîtikaya Tirkiyeyê û rastiya dewleta tirk bêtir were dîtin." Li ser pirsa Rûdawê ya gelo partiya we reaksiyonek nîşanî Wezareta Derve da? Gulan Avci got: "Wê li ser vê mijarê parlementerên Partiya Gel pirsa pêşniyaznameyê li Wezîrê Derve bikin û rastiya wê derxînin"

### Çetin: Tirkiyeyê terora xwe gihand heya Swêdê

Siyasetmedareke din a ku beşdarî vê semîner bû û semîner daye Evîn Çetin e. Çetin dibêje ku ew qet ji daxwaz û kiryarên Tirkiyeyê şaş nabe: "Tirkiye li her derê û her demê xwedî daxwazên wisa ye." Lê Evîn Çetin şaş bûye ku çawa Wezareta Derve ya Swêdê daxwaza dewleta Tirkiyeyê qebûl kiriye û nehiştiye siyasetmedareke navdar ya ku beriya bi çend mehan parlementer bû ji nav bernameyê derxistiye: "Eger ku niha wisa bi awayekî vekirî Wezareta Derve ya Swêdê daxwaza Tirkiyeyê ya kirêt anî cîh, nexwe niha di pişta perdeyê de çi dikin? Ez wê meraq dikim. Nexwe niha dewletên dîktator çi bixwazin ji Swêdê wê bi ya wan bikin? Tirkiyeyê terora xwe gihand nav sînorê Swêdê jî û wek mînaka Gulan Avcî mirovan mexdûr dikin."

Derbarê sedema ku çima navê wê jî ji bernameyê nehatiye derxistin, Evîn Çetin got: "Navê min di bernameyê de wek Evîn Çetin ne nivîsandibûn, lê wek jineke siyasetmedar ya penaber û ji navenda Palme Center hatibû nivîsîn. Semîner ya min û Sekreterê Giştî yê navenda Palme Center Jens Orback bû. Ez bawerim hevalan wek tedbîr bi zanebûn navê min ne nivîsandibûn. Loma jî bala rayedarên Tirkiyeyê nekişandiye û texmîn nekirine ku ez ê di semînerê de biaxivim. Wekî din teqez wê navê min jî ji bernameyê derxistibana." Evîn dibêje ku wê pêşî nizanîbû ku çima Gulan Avci beşdarî semînerê nebûye, heya wê gotar belav nekiriye, haya wê jê nebûye. Ew dibêje di dema semînera wê de, li ser rexneyên wê yê derbarê Tirkiyeyê de, jinên CHPyî parlemento terikandine û derketine. Evîn Çetin dibêje axaftinên wê yên li ser şaredariyên xweser jî li xweşiya parlementerên jin yên partiyên tirkan neçûye û bi awayên cuda reaksiyon nîşan dane. Çetin got ku ew ê jî weke jineke kurd û siyasetmedareke ku li Swêdê polîtîkayê dimeşîne dev ji vê meselê bernede û wê bi alîkariya parlementerên Partiya Sosyal-Demokratan pirsa pêşniyaznameyê ya "Ma dewleta Tirkiyeyê siyaseta Swêdê dimeşîne, gelo dewleta Tirkiyeyê dest daniye ser siyaseta Swêdê?" ji Carl Bildt bikin.

Evîn Çetin axaftina xwe didomîne û dibêje: "Nexwe em bibin parlementer jî û di cihên gelek girîng de cîh bigirin jî em dikarin rastî êrîş û polîtîkayên xirab yên Tirkiyeyê werin. Nexwe em çiqas bi pêş bikevin jî, em ê li welatekî wek Swêdê her penaber bin û em ê rastî neheqiyên wisa werin! Polîtîkaya Wezareta Derve û bi taybet Wezîrê Derve Carl Bildt gelekî şaş e û eybeke mezin e. Carl Bildt mecbûr e li dîroka dîplomasiyê ya Swêdê binêre û kevneşopiya Olof Palme û Dag Hammarsköld, ku bi kedeke mezin afirandine, bişopîne. Ne ku here berjewendiyê xwe yê siyasî û aborî esas bigire. Siyaset û fikrên Bildt ne layiqê kevneşopiya dîplomasiyê ya Swêdê ne."



**Gulan Avci:**

Di 1977ê de li bakurê Kurdistanê, li bajarê Wanê hatiye dinê. Ew endama Partiya Gel ya Swêdê ye. Di 2009ê de kete Parlementoya Swêdê. Di salên 1998-2000î de serokatiya Rêxistina Ciwanên Kurd kir.



Di 1984ê de li Kurdistana Bakur, li Mêrdînê ji dayik bû. Niha berpirsiyara Partiya Sosyal-Demokrat ya herêma Dalarna ye. Ji karê 15 şaredarên sosyal-demokratan yê herêmê û ji karên nexweşxaneyan berpirsiyar e.





Wêne: Rûdaw

Dr. Remzî li Spanyayê xwedî 1200 darên fistiqan e

# Welatê Don Kîşot bûye Kurdaxa wî

» Dr. Remzî Ala 40 sal in li Spanyayê dijî

» Ew li herêma La Manchayê ya ku di romana Cervantes de derbas dibe, ligel doktoriyê karê cotyariyê jî dike.

**Zinar Ala**

Hem doktor e, hem jî cotyar e. Remzî Ala ji gundê Mabetan yê bi ser Efrînê ye û ev 40 sal in ku li Spanyayê dijî. 31 sal karê bijîşkiyê dike û ev bûn çend sal di demên vala de dest bi karê cotyariyê kiriye.

Remzî di 20 saliya xwe de berê xwe dabû Tirkiyeyê ji bo xwendina bijişikiyê lê li wî welatî sê mehan jî li ber xwe nedabû û vegeriya Kurdaxê û piştre hat Spanyayê: "Bavê min ji bo xwendina bijîşkiyê ez şandibûm Tirikiyê, li wir min nedikarî bi kurdî biaxivim, nejî bigota ez Kurd im. Rojekê ku ez li ber balyozxaneya Spanyayê dimeşiyam, ez rastî agahiyekê ji bo xwendina bizîşkiyê li Spanyayê hatim. Tavilê ez vegeriyam Sûriyê, min kaxesên xwe amade kirin, xatir ji malbatê xwest û ez bi gemiyê ji Beyrûdê çûm heya Barcelonayê.

Remzî di sala 1970î de dest bi xwendina bijîşkiyê kir û di sala 1980î de karê xwe weke doktor li gundekî li herêma La Manchayê destpê kir. Lê di van deh salan de jiyana xortê Kurdaxî qet ne hêsan bû, ew pêrgî pirsgirêkên aborî û tendirustî hatibû. Ji aliyekî nexweşiya gurcikê, ku ew salekê ji xwendinê bi dûr xist û ji aliyê din ve jî bavê wî hewiyeke din ji dayîka wî re anî, weke ku Dr. Remzî dibeje: "Di sala duyemîn ji xwendina xwe de ez nexweş ketim û min neştergera gurçikê çêkir, rehmetî bavê min bo cara sisiyê jî zewicî, derçûnên wî jî pir bûn, êdî pere ji min re nedişand û digot ku îrada erdê kêm bûye. Lê birayê min ê mezin alîkariya min kir ji bo lêçûnên xwendinê, her wisa di dema havînê de ez diçûm Fransayê û min di nexweşxaneyan de kar dikir".

Di sala 1982yê de Dr. Remzî dîsa nexweş ket û vê carê gurçikek wî rakirin û perçeyek ji ya din jî jêkirin. Ew bi nîv gurçikê ma. Ev jî bû sedemek ku pisporiya nexweşiyên gurçikan bixwîne. Ev bûn 31 sal ku Dr. Remzî karê bijîşîkiyê li gundên herêma La Manchayê dike, herêma ku bi navê warê "Don Kîşotê" romana navdar ya Cervantez tê naskirin. Di van heşt salên dawîn de jî Dr. Remzî berê xwe daye çandiniyê. Digel ku ew ji herêma zeytûnan tê, lê wî tenê sê darên zeytûnan çandine, yek ji wan jî ji Mabetan aniye. Ew bêhtir ji darên fistiqê hez dike, niha jî 1200 darên fistiqan di erdê wî de hene: "Ji berê de ji darên fistiqê hez dikim. Li Kurdaxê bi milyonan darên zêytûnê hene, lê ti kes fistiq neçandibûn, tenê li derdorê Helebê hebûn. Vêca min got bila darên fistiqê li ba me jî hebin. Min kurs jî derbarê dara fistiqê de û çandina ekolojîk çêkirin, me di despêkê de şitlên qisanê çandin û piştre me ew bi gupikên fistiqê aşle dikirin. Birayê min çend caran serdana min kir û û ez fêrî vedan û aşlekirinê kirim. Niha ez bi xwe vî karî dikim."

**Di sala 1982yê de Dr. Remzî dîsa nexweş ket û vê carê gurçikek wî rakirin û perçeyek ji ya din jî jêkirin. Ew bi nîv gurçikê ma. Ev jî bû sedemek ku pisporiya nexweşiyên gurçikan bixwîne**

Di dema çêkirina hevpeyvînê de Dr. Remzî hem guftûgoyê bi me re dike, hem jî çavên xwe di nav daran de digerîne, darên qisanê yên mê û yên nêr vedide û aşle dike. Ji nişka ve hebûna çend şitlên fireng û kundiran li ber kokê hin daran bala me dikşîne. "Min ne çandine, bi xwe derdikevin, ji ber ku tiştê ji ber xwarinê dimîne li ber kokê dara vedişêrim ji bo ku bibe zibil ji darê re. Ji ber hinek car dendikê bacan û kundiran dibin şitil û li ber kokê daran derdikevin", Dr. Remzî dibeje.

Dr. Remzî wê îsal jî sûdek aborî ji fistiqan werbigre. Ew bi xebata xwe gelekî dilşad e û dixwaze ku ezmûna xwe li herêma Efrînê jî belav bike: "Gava li van daran dinêrim gelek kêfxwş dibim û dema ku aşlekî derdikeve, li cem min weke çawa zarokek ji dayîk dibe. Dema ez teqawît bibim, ez ê salê şeş-heft mehan li Kurdaxê derbas bikim, ji bo ku ezmûn û zanîna xwe têxim xizmeta gelê xwe."

# Tîmên kurdan yên lîgên Tirkiyeyê dilebitin



Batman Petrolspor wiha dom bike wê di dawiya sezonê de derbasî lîga 2. bibe



Diyarbakirspor heta niha ti maçek bi ser neketiye.

**Amed (Rûdaw )-** Diyarbakirspora ku ji Lîga Super daket Bank Asyayê û ji wir jî daket Lîga 2. ya Grûba Spî di sê maçên vê sezonê de heta niha ti maçek bi serneketiye, du maç wenda kirine, yek wekhev maye û tenê 1 pûanên wê heye.

Mardinspor û Adiyamanspor jî di Lîga 2. ya Grûba Sor de cîh digirin û Mardinspor 3, Adiyamanspor jî 4 pûanên wê hene.

### Di Lîga 3.de 3 tîmên kurd

Tîmeke din ya Amedê Diyarbakir Diski di Lîga 3.em Grûba 1.de cîh digire; ev lîg di dawiya tebaxê de dest bi sezonê kir û heta niha 6 maç hatine leyîstin. Li gor encamên van maçan Diyarbakir Diski 3 maç bi ser ketine, yek wekhev maye û du maç jî wenda kirine; pûanên wê 10 in û di tabelleyê de di rêza 4.de cîh digire. Belediya Vanspor jî di heman lîgê de cîh digire, wek Diyarbakir Diski 3 maç bi ser ketiye, yek wekhev maye û du maç jî wenda kirine; 10 pûanên wê 10 hene, lê di averaja golan de kêm e û di rêza 6.de cih digire.

### Batman Petrolspor lîderê lîgê ye

Di lîga 3.em Grûba 2.de tabloyeke cuda heye: Lîderê lîge tîmeke Kurdistanê ye: Batman Petrolspor. Ev tîm ji 6 maçan 5 bi serketiye û tenêyek maç wenda kiriye û 16 pûanên wê hene. Batman Petrolspor 6 gol avêtine û tenê yek gol jê re hatiye avêtin. Di heman lîgê de Bingolspor 7 û Erganispor jî 6 pûanên wê hene.

Siirtspora ku demekê di Lîga Super de dileyîst ji ber bê xwedîtiyê sal li du salan daket jêr û niha di lîga 3.em Grûba 3.de cîh digire. Siirtsporê di maça dawî de di saheya xwe de ligel Zeytinburnuspor leyîst û dijberê xwe 5-0 têk bir, le Siirtsporê ji 5 maçan tenê pûan wergirtine; maçekî Siirtsporê kêm e. Di heman lîgê de Diyarbakir Kayapinar jî dileyîze, lê ji 6 maçan tenê 4 pûan wergirtine.



10 pûanên Belediye Vansporê hene

## Ev sezon ne sezona Mîrkan e

**Bochum (Rûdaw) -** Futbolvanê kurd yê ku di tîma alman Bochumê de dileyîze, Mîrkan Aydin sezoneke kêm gol derbas dike. Mîrkan di sezona borî de 8 gol avêtin, lê di sezona nû de heta niha tenê yok gol avêt.

Tîma Bochum ku di Lîga 2.ya alman de cîh digire sezona borî hewl da xwe ku derbasî lîga yekem bibe, lê di maçên Relegationê de (Play-Off) de li himberê B.Monchengladbach bi ser neket û dîsa di lîga duyem de ma. Stêrka Mîrkan Aydin jî di çend maçên dawî yê sezona borî de pêketibû û 8 gol avetibûn. Tîma Bochum di neh maçan de 7 pûan wergirtin û tenê 7 gol avêtine, lê 17 gol ji wan re hatiye avêtin. Mîrkan di maça li himberê Dresdenê di deqeya 90.de golel avêt.





Serokê Şaredariya Sêrtê Selîm Sadak piştî maca Zeytinburnu, leystikvanên tîma bajarê xwe pîroz kir.



# “Eger min bi îngilîzî zanibûya ez dibûm star”

Hunermendê kurd Bedîl îsal di kanalek almanî de tevlî pêşbirka X Factor bû, lê jiber ku bi îngilizî nestirî, berdewam nekir

**Azad Dîcle**

Li Almanya û li gelek welatên din di kanalên televîzyonan de bernameyên cûrbecur yên zîrekiyê hene ku ji wan bernameyan gelek hunermend tên kifşkirin û paşê dibin navdar. Mînak stranbêja îngilîz Leona Lewis a navdar û Mehrzad Maraşî ji pêşbirkeke zîrekiyê derbas bûn û bûn star. Di kanala televizyona almanî Vox de di mehên buharê de bernameyek bi navê X Faktor hebû û di vê bernameyê de çend caran stranên kurdî jî hatin gotin. Stranbêj Bedîl sê tûr bi serkeftî derbas kirin lê di tûra 4.de ji ber ku nekarî straneke bi îngilizî bêje xwe paşve kişand bêje û ji tûrê veqetiya. Bedîl got, “Eger min bi îngîlizî zanibûya ez dibûm star.“

Kanala televizyonê ya almanî Vox di meha adara 20011ê de dest bi bernameya X Faktor kir û ji bo beşdariya vê bernameyê li seranserê Almanyayê nêzîka 150 hezar kes serî lê dan. Ji van kesan 150 kes ji aliyê juriya bernameyê hatin hilbijartin û tevlî tûrên bernameyê bûn. Yek ji wan jî strtanbêjê kurd Bedîl bû. Derbarê hilbijartina wî ya ji bo vê bernameyê Bedîl ji Rûdawê re regahehand ku rojek ji organîzatorên bernameyê jê re telefonek hatiye û jê xwestine ku tevlî pêşbirka wan a zîrekiyê bibe. “Wek ji min re gotin, wan di înternetê de derbarê stranbêjên kurd de lêkolîn kirine û navê min dîtine.“

Bedîl di tûra yekem de li himberê jurî stranek kurdî gotiye, di tûra duyem de bi almanî û kurdî gotiye û di tûra sêyemîn de dîsa bi kurdî û almanî gotiye. Derbarê berdewamiya pêşbirkê Bedîl got, “Min zanibû ku di pêşbirkê de stranên bi îngilizî jî hene, lê min ji jurî re got, ku Sarah Konor jî yek ji wan bû, eger hûn stranên îngilizî ji min bixwazin pêşî ji min re bêjin ku ez xwe amade bikim. Lê di 1ê Gulanê de di tûra 4.de saetek beriya pêşbirkê straneke îngilizî dan destê min û ji min re gotin divê tu vê stranê bêjî. Ne mimkûn bû ez di saetek de xwe amade bikim û min xwe paşve kişand û pêşbirk ji bo min bi dawî bû.“

Stranbêj Bedîl di sala 1968ê de li gundekî kurdên êzidî ya nêzîkê Bêşîriya ser bi Batmanê hatiye dinyayê û di sala 1986ê de ligel malbata xwe hatiye Almanyayê. Bedîl heta niha 5 album derxistine û niha amadekariya albuma xwe ya 6. dike û ji bo weşana albumê li şîrketek digere.

Bedîl li herêmên bajarê n Kleve, Duisburg û Emmerichê tevlî dawetan dibe û stranên gelerî û nûjen bihev re dibêje. Bedîl ji bilî kurdî dikare bi almanî jî bisitire.






Juriya X-Factor

## Şerîf Qeyran di demeke nêzîk de diçe Başûrê Kurdistanê



*Şerîf Qeyran yek ji wan hunermendên diyar ên Tirkiyeyê ye ku Kurdayetiya xwe parastiye û piraniya herî zêde ya berhemên xwe bi kurdî gotine, hertim jî şanaziyê bi wê yekê dike ku xizmeta hunera gelê xwe dike. Ew dilteng dibe gava nûçe û wêneyên bombedûmana gund û deverên sînorî yên Herêma Kurdistanê dibîne, weke ku bi xwe dibêje: “Dilê min parçe dibe ku wêneyê zarok û jinên şehîdên bombebarana Artêşa Tirk dibînim, lê belê tenê dikarim bikim hawar, bes e şer, bes e kuştin, êdî aşîtî.”*

**Rûdaw: Bombekirina gund û navçeyên sînorî yên Herêma Kurdistanê ji aliyê firokeyên tirk bûye sedemê kuştina jin û zarokên sivîl û şewitandina rez û baxên cotkaran. Helwesta we çi ye?**

**Şerîf Qeyran:** Ez Kurd im, dê û bavê min jî Kurd in, her dema ku kêşeyek bo Herêma Kurdistanê dirust dibe, dilê min parçe parçe dibe.

**Li gor hevwelatiyên Tirkiyeyê rewa ye firokeyên welatê wan xelkên bê tawan ên Kurdistanê bombebaran bikin?**

Bi baweriya wan jî bombebarankirina wan gund û deveran ne karekî baş e. Xelkên gund û navçeyên sînor zerermend dibin, zarokên bêtawan tên kuştin, baweriya wan wisa ye.

**Ligel bûyeran, weke hunermendekî bi wê yekê nefikirî karekî hunerî bikî ku xwesteka aştiyane ya Kurdan nîşan bide derbarê şerê ku niha heye?**

Ez çi bikim, ez hunermend im, dikarim bêjim êdî bes e, êdî aşîtî, êdî aşîtî, êdî bes e şer, bes e kuştin.

**Hunermendên kurd li Tirkiyeyê weke erkên xwe nabînin ku bi hewldaneke hunerî nîşan bidin ku dijî şer in?**

Mixabin bo hemû hunermend û xelk û alemê.

**Te stranek li ser Îbrahîm Tatlises got, mebesta te çi bû ji vê yekê?**

Min li ser kesên din jî stran gotine, lewra min li ser Tatlises jî got, ji ber ku ew kesekî taybet e û zaf ji stranên wî hez dikim.

**Tirkiyeyê azadî daye hunera kurdî?**

Vêga Tirkiyeyê hinek demokrasî daye Kurdan, hunermendên kurd dikarin karê xwe bikin, îşallah baştir jî dibe.

**Pêwendiya te ligel Zekerya çawa ye?**

Zekerya hevalê min e, herdem pêwendiya me heye, di mirinê de jî em dîsa bi hev diramin, em hevkariya hev dikin, hizirkirina me yek e.

**Hûn ne bi niyet in ku serdaneke Başûrê Kurdistanê bikin?**

Di demeke nêzîk de tême Başûrê Kurdistanê.

***Hevpeyvîn***
***Karzan Heyder***

## Ceylanê bo cara çaran mêr kir

## “Hêvîdar im bextê min ji vî mêrê spî be”

**Karzan Heyder** Stenbol

Stranbêja navdar Ceylan heftiya borî li Stenbolê ahenga mêrkirina xwe ya çaran saz kir.

Bi rêya hunermend Kawe Kawanî, ku yeke ji hevalên nêzîk ên Ceylanê, me pêwendî ligel Ceylan danî û wê jî bo Rûdawê ragehand ku wê “ligel xortekî Stenbolî bi navê Koç Altan Oran, çarşema borî girêbesta hevseriya xwe di ahengeke ser keviya deryayê li Stenbolê îmze kir.” Ceylan got “vêga derfeta min tune ligel hevserê xwe herime heyva hingivînî, ji ber hinek aheng û konseran.”

Ceylan hêvî xwest ku bextê wê ji vî merê nû “spî be” û got “Çaverê dikim bizanim ligel vî mêrî digihîjin ku derê.” Ceylan ku bi eslê xwe Kurd e û ji Dêrsimê ye, berê bûka Îbrahîm Tatlises bû, lê dûre ji hev cuda bûn.





Hevserokê BDPê, Selahattîn Demirtaş:

# Em qebûl nakin ku Îsraîl weke zarokan bi me re tevbigere

*Amed (Rûdaw)* - *Bi sedan rojnamevanên tirk û kurd ligel destpêkirina Konferansa Kurd û civîna Forûma Mezopotamya li bajarê Amedê, berê xwe dan wî bajarî. Awirên wan hemûyan jî li ser axaftinên serokên Partiya Aşitî û Demokratiyê (BDP) bûn, lê wan xwe dûr dixistin. Yek ji wan berpirsên ku medya tirk û kurd li Amedê hewl didan wî bidin axaftin, hevserokê BDPê Selahattîn Demirtaş bû. Grûpa Rûdaw piştî ku daxwaziyek pêşkêş kir, Demirtaş bêyî dudilî pejirand. Lê wî baş dît ku hevpeyvîn dûrî çavê saziyên din ên medyayê be, loma wî li buroya parêzerê malbata xwe, li taxekî Amedê pêşwaziya grûpa Rûdawê kir û bi hurmet bersîva pirsên Rûdawê da.*

**Rûdaw: Mîna ku ji kaseta deng a gotûbêjên navbera PKKê û Dezgeha Îstixbarata Tirkiyeyê (MÎT) dixuyê, wisa diyar e ku astê gotûbêjên navbera Tirkiyeyê û Kurdan gelekî pêşketiye. Bo mînak nûnerên MÎTê navê serokê PKKê weke "birêz Ocalan" tînin, lê ji nişka ve careke din tûndûtîjî pêkhat û niha behsa operasyonên bejayî yên dersînor tê kirin. Hûn vê yekê çawa lihevtînin?**

## Encamên ji belavkirina gotûbêjên PKKê û MITê gelekî baş bû

**Demirtaş:** Dewleta tirk dixwest gotûbêjan weke taktîka demderbaskirin û xapandinê bikar bîne. Birêz Ocalan, PKK û BDPê di çend salên borî de dewlet derbarê vê yekê de hişyarkirin. Me ji dewletê re got gotûbêjan bo demderbaskirin û xapandinê bikar neyînin, lê pêwîst e hûn vî karî bo çareseriyê pêk bînin. Dewletê gotûbêj nedikir bo dîtina çareseriyê, wê yek pêngava praktîk a berbiçav ne avêt. Ango AKPê ligel destpêkirina gotûbêjan xwesteka çareserkirina pirsgirêkê nebû, lê me weke BDP hewldida ku ev gotûbêj bibe pengava çareserkirina pirsgirêka kurd. Loma astê gotûbêjê bi axaftin bilind e, lê bi kiryar ti pêngav nehatine avêtin.

**Derbarê belavkirina wan kasetan de hin kes di wê baweriyê dene ku "Ergenekona nava MÎTê" ev kar pêkaniye, hin jî dibêjin PKKê û hin jî dibêjin Îsraîl. Li gor we kê ev kar encam da û armanca wî çi bû?**

Bo me ne girînge kî li pişt belavkirina wan bû, tiştê bo me girîng ew bû ku derencamên belavkirinê pozîtîv bûn. Kesên ev kaset belav kirine niyetên xirab ên wan hebûn û xwestine rewşê aloztir bikin û qunax bighije binbestê, lê helwesta me, helwesta raya giştî ya tirkî û medya tirkî jî erênî bû, loma belavkirina wan derencamekî baş çêkir. Mimkin e ev tişt xizmeta gurkirina hewlên çareserkirina pirsgirêka kurd bide. Hikûmet û PKKê jî gotin ku ew ne li pişt belavkirina van kasetên dengî ne, loma dixuyê ku hêzeke din li pişt vê yekê hebe. Niha jî di bin siya vê rewşê de gok di qada hikûmet û di destê Serokê Wezîran Erdogan deye, ev gok çawa wê bê avêtin serokwezîr biryarê dide. Şertûmerc bo aşîtiyê gelekî guncayî ne, lê ku serokwezîr sor be li ser şer, wê demê rewşa berxwedanê bo Kurdan gelekî guncav e.

**Hûn behsa zemîneya aşîtiyê dikin, lê niha rewşa şer baskê xwe bi ser navçeyê de berdaye.**

Di demên ku şer baskê xwe bi ser hemû tiştan de vedike, zemîneya aşîtiyê her hebû, ji ber ku armanca bicihkirina aşîtiyê bi dawî anîna şer e. Loma wê dema şer heye, pêwîste em ji hewlên bicihkirina aşîtiyê de paşde neyên. Zemîna danûstandinê hertim heye. Rast e, şer tundtir dibe, lê hemû hewl bo rawestandina şer tên encam dayîn. Loma me ti deman ne di borî de û ne di dahatûyê de deriyên xwe himber aşîtiye ne girtine, ez bawer im hikûmetê jî deriyên xwe negirtine.

**Gelo ti hewlên ji bo rawestandina vî şerî hene? Tê gotin ku çend serkirdeyên kurd hewl didin PKKê qayil bikin ku hêzên xwe bibe derveyî Tirkiyeyê. Hûn weke Serokê BDPê, zaniyariyên we di vî warî de hene û hûn hewleke bi vî rengî çawa dinirxînin?**

Nexêr, zanyariyên wisa negihane min. Hemû alî hewlên dîplomasî didin, lê heta hikûmet çend pêngavên berçav û eşkere neavêje, ez bawerim ti pêşketin çênabe. Ev du mehin rê nayê dayîn ku birêz Abdullah Ocalan hevdîtinên heftane yên asayî ligel parêzer û kesûkarên xwe pêkbîne. Ocalan ew hêza tekaneye ku dikare PKKê ji şerkirinê rawestîne û wisa bike biçe derveyî sînor û çekê dane. Loma em nikarin bêjin ku hewlên dîplomasî bihêz in. Hemû kes çaverêyî agirbestê ji PKKê dikin. Bi baweriya me jî divê herdu alî çekên xwe bêdeng bikin, ji ber ku agirbesta yekalî ya PKKê ti encameke wê nabe, ji ber ku xwînrijîn ranaweste, loma hikûmet divê bersîva agirbestê bide. Hikûmet eger niha operasyonên xwe rawestîne, ez bawerim rasterast PKK wê agirbestê îlan bike. Lê ez ne bawerim ku di rewşeke wiha de yan aşîtî yan agirbest di van nêzîkan de pêk bê. Xweziya ku pêşketin çêbibin, xweziya ku herdu alî pêngavan bavêjin û niha agirbest bê ragihandin, lê cîbicîbûna van tiştan di dahatûyekî nêzîk de hinekî zor e.



Wêne: Rûdaw

Hevserokê BDPê û Parlementerê Amedê Selahattin Demirtaş

**Hûn weke BDP çi dikin bona rêgirtina li firehbûna şer, yan hûn çi difikirin?**

Me serdana Wezareta Dadê kir, da ku hevdîtinê ligel birêz Ocalan pêkbînin. Eger vê destûrê bidin, em ê biçin cem wî û derbarê hemû bûyeran de gotûbejan ligel encam bidin. Em ê herwiha di çend rojên dahatû de ligel Serkomar Abdullah Gul rûnin û gotûbêjan ligel saz bikin û herwiha ligel Serokê Palamenê jî.

**Kengî?**

Bi dirustî ne xuyaye, lê em ê di çend rojên dahatî de van civînan pêk bînin. Em weke BDP ji bilî van jî em ê meş û mîtîngên aşîtiyane pê bînin û dest bi proseyekê bikin. Em ê herwiha gotûbêjan derbarê zivirîn û nezivirîna bo parlemenê jî bikin. Eger rêya bûyeran berbi aşîtiyê be, dibe ku em di 1ê Îlonê de vegerin parlemenê.

## Di vê rewşê de ragihandina agirbestê zehmet e, lê xweziya pêk bê

## Em ê di çend rojên dahatî de ligel Serkomar û Serokê Parlemena Tirkiyeyê rûnin

**Serkirdatiya Kurd li Herêma Kurdistanê biryara BDPê ya boykotê şaş dibîne, hûn vê nerinê çawa dibînin?**

Ew peyam gihane me, ew rexneyên dostaniyê ne. Peyama herdu birêzan Talabanî û Barzanî gihaye me, em wan peyaman fêm dikin, lê pêwîste ew herdu serokên birêz jî rewşa vir fêm bikin. Pênc parlementerên me di zîndanê de ne, mafê parlementeriyê ji Hatip Dicle standine. Eger em himber van tiştan bêdeng bûna, ew ne karekî rast bû, divê reaksyona me hebe. Me ev reaksyon jî bi neçûna parlemenê nîşan da. Lê tevî vê yekê jî me negot em ê dest ji parlemenê berdin, lê me got em ê bo maweyeke demkî parlemenê baykot bikin û eger zemîne bên rastkirin, em ê vegerin parlemenê.

**Gelo peyama Herêma Kurdistanê bo vegera we bo parlamenê bûye hêzeke goşarê?**

Berevajî, ew ji me re hêza piştevaniyê ye. Em wan peyaman weke peyamên dostane û demokratîk binav dikin.

**Hûn nerîna Herêma Kurdistanê derbarê Erdogan de çawa dinirxînin?**

Ez bawerim Herêma Kurdistanê baş fêm nekiriye ka Erdogan çawa ligel Kurdên Bakûr tevdigere. Lê em rewşa zehmet a Herêma Kurdistanê li ber çavan digirin. Ew nikarin têkiliyên xwe ligel Erdogan û Tirkiyeyê qut bikin û neçarim bidomînin. Ew neçar in têkiliyên baş ligel Tirkiye, Ewropa û Amerîkayê avabikin. Em hurmeta vê yekê digirin. Lê em ji wan jî çaverê dikin ku bi hurmet berê xwe bidin opozisyonbûna me himber Erdogan. Pêwîste serkirdatiya kurd li Herêma Kurdistanê rêza berhingariya Kurdên Bakur û BDPê himber Erdogan bigre. Em ê bi vî şêweyê bikarin baştir hevdu fêm bikin. Ez bawerim ku bi derbasbûna demê wê birêzan Barzanî û Talabanî baştir Erdogan fêm bikin. Dibe ku wan di borî de bi şêweyekî eşkere piştgirtiya Erdogan kiribe, lê ew îro bi eşkere piştgirtiya wî nakin. Ji ber ku ew jî hest bi wê yekê dikin ku Erdogan naxwaze pirsgirêka kurd bi şêweyekî aşîtiyane çareser bike, ango Erdogan naxwaze bi wekhevî û aşîtî ligel Kurdan bijî, lê hewl dide rêveberiya kurdan bike.

**Leyla Zana serdana birêz Talabanî kir, ji Talabanî çi peyam giha we?**

Endamê komîte û xwediyê ramana kampanyayê Herêm Kerîm: **Pêwîstiya me zêde bi alîkariya darayî heye. Eger em ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê û partiyan rûnenin, divê em berê xwe bidin bazirganan**


Wêne: Rûdaw

# Kampanya serxwebûna Kurdistanê li Brîtanyayê berbi sarbûnê diçe

Roj Ehmed Brîtanya

Kampanya komkirina 100 hezar îmzeyên xelkên Brîtanyayê ji bo serxwebûna Kurdistanê û bûna wê weke babeteke Parlementoya Brîtanyayê, meha çûyî ji aliyê hejmareke çalakvanên kurd di civîneke giştî de li Londonê hat ragehandin. Her çiqasî heya vêga nêzîka 3 hezar îmze hatine komkirin, lê belê berpirsê ragehandina kampanyayê got ku zêdeyî wan çaverê dikirin "dabeşbûna siyasî û çend pirsgirêkên din yên di nava revenda kurd de li Brîtanyayê kampanya sist kirine, kampanya sar dibe."

Piştî ragehandina wê, ev kampanya di rojên pêşî de ji aliyê piraniya partî û aliyên siyasî û sivîl û kesayetiyên kurd li derve piştgiriyeke moralî ya berçav lê hat kirin, bi taybetî di nava revenda kurd de li Ewropayê. Lê belê Herêm Kerîmê ku berpirsê ragehandina kampanyayê ye, ji Rûdawê re got vêga ji ber çend pirsan çalakiyên kampanyaya wan sist bûne: "Ji hemuyan dijwartir dabeşbûna siyasî û partîzanî ya endamên revenda kurd li Brîtanyayê ye". Kerîm vê dabeşbûna siyasî û partîzanî weke "berbesteke mezin" wesif dike li pêşber karên komîteya hilbijartî ya kampanyaya wan. Kerîm herwiha got pêwîstiya wan bi hevkariya darayî heye bo berdewamkirina kampanyayê, lê heya niha ti alîkariyeke darayî negihiştiye wan.

## Endamên komîteyê bi kar ve mijûl in

Herêm Kerîm yek ji wan sedemên rotînî ku ev kampanya sist kirine, vegerand pirsgirêkên takekesî yên rojane yên endamên komîteya wan û got: "Bi giştî sarbûnek heye, hinek tişt derketine pêş ku bi awayekî giştî prose sist kirine, endamên komîteya ku me pêk anîbû, yan bi kar ve mijûl in, yan sefer kiribûn ji ber bêhnvedana havînê."

Herêm Kerîm endamên komîteya wan heya vêga bi awayekî fermî ligel Hikûmeta Herêma Kurdistanê û aliyên siyasî yên kurdî neciviyane, daku nêrîna wan bizanin, ka gelo piştgiriya wan dikin yan na. Weke ku Herêm behs kir, alîkariya darayî bo vê kampanyayê dînamoyê karên wan e.

Her çiqasî gelek malperên kurdî piştgiriya kampanyayê dikin û lînka forma îmzekirinê li ser rûpelê malperên xwe danîne, lê hejmara îmzeyên komkirî nîşan dide ku hêjî piştgiriyeke zêde li vê kampanyayê nehatiye kirin, li gor hejmara rûniştvanên kurd li Brîtanyayê û qebareya vê doza dîrokî ya Kurdan ji bo damezrandina dewleta xwe ya serbixwe.

## 200 hezar Kurdên Brîtanî hene

Her çiqasî heya vêga serjimêriyeke tevahî ya revenda kurd li Brîtanyayê li ber dest tune, lê belê hinek jêderên brîtanî amaje didin ku zêdeyî 200 hezar Kurd li Brîtanyayê hene. Ev jî xênî penaberan, an kesên ku dozên wan ji aliyê Wezareta Navxwe ya Brîtanyayê hatine redkirin. Şertê tevlîbûna kampanyayê jî ew e, kesê ku îmze dike, divê hevwelatiyê Brîtanyayê be.

Herêm Kerîm got dabeşbûna siyasî û partîzanî bandoreke negatîv dikin û wisa kirine ku revenda kurdî baweriyê bi bêalîtiya kampanyaya wan nekin, lewma Kurd li Brîtanyayê bêtir weke kampanyayeke partîzanî dijî helwestên xwe yên siyasî dibînin: "Diyar e kêşeyên dîrokî yên siyasî yên Kurdistanê tesîrê li ser takekesan li vir dike. Tu diçî cem her kesekî yan te weke alîgirê Goran, PDK, YNKê, yan weke Îslamiyekî dibînin, lê mora partîzanî li ser vê kampanyayê tune û kes ne xwediyê wê ye, tenê dozeke neteweyî ye." Herêm herwiha got ew nikarin rûbirû ligel hinek ji wan Kurdan jî biaxivin û wan ji armanca giştî ya kampanyaya xwe agahdar bikin, lewma bi neçarî daxwaz ji endamên komîte û kargêrên wan yên partîzanî kirine wan han bidin ku îmzeyan ji bo kampanyayê kom bikin û piştgiriya wê yekê bikin ku pirsa damezrandina dewleta Kurdistanê di Parlemena Brîtanyayê de bê gotûbêj kirin.

---

Serdana Leyla Zana serdana şexsî bû, li ser vexwandina birêz Talabanî bû. Ew bêtir ku serdaneke siyasî be, serdaneke dostane bû. Di wê serdanê de bêguman behsa bûyerên siyasî hatibû kirin. Birêz Telebanî hertim amadeyiya xwe nîşan daye bo piştevaniya çareserkirina pirsgirêka kurd li Tirkiyeyê, herwiha bo navbeynkariya navbera herdu aliyan, lê Tirkiye rola wî zilamî nanirxîne û napejirîne. Yanî peyamên Talabanî derbarê aşitiyê de gelekî girîng in, wî careke din jî bi rêya Leyla Zana ew peyamên xwe şandin.


Wêne: Rûdaw

**Îsraîlê di dema dawî de peyama dostaniya ligel Kurdan ragihand. Hûn vê peyamê çawa dixwînin?**

Tiştê ku Îsraîl dike helwesteke ne rast e, ji ber ku dema têkiliyên wan ligel Tirkiyeyê xirab dibin ew hewldidin Kurdan bikarbînin, lê Kurd ne mîna xelkê ne ku ew bikarin wan bi kar bînin. Kurd xwedî îrade ne, Kurd dixwazin têkiliyên aşitî û biratiyê ligel hemû kesan avabikin. Kurd dixwazin ligel Îsraîl, dewlet û xelkên din jî bi aşitî bijîn û têkiliyên wan ên biratiyê hebin, lê em mesela bikaranîna Kurdan a li gor berjewendiyê red dikin. Îsraîl dema têkiliyên wê ligel Tirkiyeyê têk diçin, îcar hizra bikaranîna Kurdan bike, ev biçûkkirina Kurdan e, sivikatîkirine bi Kurdan, loma em vê helwesta Îsraîlê protesto dikin. Em dijminatiya kesî nakin, lê em qebûl jî nakin ku weke zarokekî ligel me tevbigere. Hebûna têkiliyên Kurd-Îsraîl tiştekî asayî ye, lê hewla Îsraîlê bo bikaranîna Kurdan şaşî ye.

**Talabanî hertim amadeyê navbeynkariyê bû, lê Tirkiye rola wî zilamî nahelsengîne û napejirîne**

**We berî demekê, di dema serdana Wezîra Derve ya Amerîka Hilary Clinton bo Tirkiyeyê de, civîn ligel wê sazkir. Gelo di wê civînê de we çi peyam ji Amerîka girt û piştî vê ti rûniştin û peyamên we yên din ji Amerîkayê hebûn?**

Nexêr, lê hevdîtina me ya ligel birêz Wezîra Derve ya Amerîkayê gelekî baş bû, Amerîka nîşan da ku ew girîngiyê dide tevgera yasayî û siyasî ya Kurd, herwiha ew îradeya kurdî bi ciddî temaşe û qebûl dike. Em heta niha ligel Serokê Amerîka û Wezîra Derve civiyane, lê me ev tişt ligel Serokwezîrên Tirkiyê nebû. Serokwezîr opozisyona nava welatê xwe qebûl nake, lê em li ser asta herî bilind a welatan, ku Amerîka jî ligel be, em tên qebûl kirin. Em ligel Serokwezîra Almanya, Angela Merkel civiyane, lê em heta niha ligel Serokwezîrên welatê xwe ne civiyane.

Serokê Komîteya Çaksaziyê ya Serokatiya Herêma Kurdistanê:

# Li Kurdistanê li pişt karê gendeliyê mafyayek hebû

Serokê Komîteya Çaksaziyê li Serokatiya Herêma Kurdistanê bo ragehand ku heta niha di çavçoveya prosesa çaksaziya Serokê Herêma Kurdistanê destpêkirî de, nêzîkî 400 proje hatine hilweşandin û 300 projeyên din jî di bin lêkolînê de ne. Wî amaje da dijwariya karê komîteya xwe û got "li pişt karê gendeliyê mafyayek hebû û ev gendelî jî çendîn sale ketiye serhev."

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di 14ê Hezîrana 2011ê de avakirina komîteya çaksaziyê ragehand û bo vê armancê jî komîteyek hat avakirin ku Dadwer Azad Mela Fendî serokatiya wê dike. Hakim Azad Mela Fendî di axaftinên xwe de got ku ev proses ne tenê ji warê hilberîn û musatehê pêktê û got, "lê ev beşeke karên vê komîteyê ye û paşî wê di warên derman, xwarinên dembiserde borî, girêbestên domdirêj, kontrakt, kalîteya kontrolê û çendîn warê din jî li xwe digire."

## Berdevkê Komîteya Çaksaziyê, Dr. Omêd Sebah: Li her sê parêzgehan 394 projeyên mezin hatine hilweşandin

Li gor lêkolîn û pîvanên rêxistinên zelaliya navnetewî û Neteweyên Yekgirtî, girîngtirîn û berçavtirîn du warên ku gendelî tê de tê kirin di welatên nûgeşbûyî de, warên projeyên musatehe û kontraktê ne. Loma jî gelek çavdêr dibînin ku destpêkirina çaksaziyên Serokê Herêma Kurdistanê di van du waran de karekî rast bû.

Serokê Komîteya Çaksaziyê, Azad Mela Fendî behsa yasaya hilberînê kir li Herêma Kurdistanê ku di sala 2006ê de ji aliyê Parlamenê Kurdistanê hatiye pejirandin û got "di wê yasayê de gelek kêmasî hene û ev jî bûye sedema dirustbûna beşeke wan pirsgirêkên ku niha di warê hilberînê de hene, loma em niha di warê talîmat û yasyên taybetên vî warî de kar dikin."

Berdevkê Komîteya Çaksaziya Serokatiya Herêma Kurdistanê, Dr. Omêd Sebah derbarê wan projeyên ku heta niha bi fermana komîteya wan hatine hilweşandin got, "heta niha 133 keys ji aliyê Serokatiya Herêma Kurdistanê bo komîteya me hatine ku lêkolîna wan bikin, me heta niha 60 ji wan keysan qedandine. Li her sê parêzgehên Kurdistanê 394 projeyên musatehê ku dibin nêzîkî 2000 donimên erdê, hatine hilweşandin."

Serokê Herêma Kurdistanê di meha adara borî de şeş xal ragihandin weke pêngaveke sereke ya kampanyaya çaksaziyê li Herêma Kurdistanê û got "bo bicîkirina naveroka wê proseyê, me soz daye ku di dema 3- 4 mehan de derencaman bibînin." Di 16ê Hezîrana 2011ê de yekemîn qunaxa encama çaksaziyan hat ragihandin ku li ser 16 xalan hatibûn dabeşkirin.

### 300 proje di bin lêkolînê de ne

Dr. Omêd derbarê pirsa ka heta niha ji wan 16 xalên Serokê Herêma Kurdistanê çend hatine cîbicîkirin, got "xala şeşemîn a biryarên Serokê Herêma Kurdistanê ku behsa teslîmkirina projeyên Civata Wezîran bo wezaretên taybetmend dike, hatiye cîbicîkirin. Bo mînak niha kontrakt li Civata Wezîran nayê dayîn. Herwiha biryara hejmar 7 jî ku taybete bi musatehê jî hatiye cîbicîkirin û di encamê de heta niha 400 projeyên musatehê hatine hilweşandin û 300 projeyên din jî di bin lêkolînê de ne."

Serokê Komîteya Çaksaziyê got da ku di demên dahatî de hevwelatiyên kêmdirav jî sûdê ji projeyên nîştecêbûnê bigirin, divê yasayê nîştecêbûnê bo kesên kêmdirav bikeve kar û Hikûmeta Herêma Kurdistanê 49 milyar Dînar bo cîbicîkirina vê projeyê terxan kirine.

### 100 hezar metre ducarkî bi şêweyekî nayasayî hatiye dayîn

Seroke Komîteyê Hakim Azad amaje dide wê yekê ku bêtirîn karên neyasayî û hilweşandina projeyan û vegerandina zeviyên musatehê bo dewletê li Parêzgeha Hewlêrê pêkhatiye û kêmtirîn erdê ku hatiye vegerandin 500 metrên ducarkî ye, lê mezintirîn erdê musatehê ku hatiye vegerandin 100 hezar metrên ducarkî ye.

Serokê Komîteya Çaksaziyê ew yek jî ronîkir ku "Hin proje hebûn wezîr bê berpirs bû, ji ber her kêmatiya di projeyeke girêdayî wezaretekê de derkeve, wê demê wezîr pê berpirs e." Lê wî got "em ne amade ne navê ti wezaret û berpirsan eşkere bikin."


Wêne: Rûdaw

## Gendelî herî zêde di projeyên şaredarî û hilberînê de hatiye kirin

Endamekî Komîteya Çaksaziyê ya Serokatiya Herêma Kurdistanê ku nexwest navê wî belav bibe, her di vê derbarê de got "Sereketirîn warê ku karên neyasayî û gendelî tê de hatiye kirin, warê projeyên musatehe, şaredarî û hilberînê bû. Ew hemû kar jî ne tenê di serdema wezareta niha ya şaredariyê hatine pêkanîn, hin ji wan di serdema Wezareta Şaredariyê ya kabîneya pêncê de hatine kirin."

### Bawer nedikirin ku wê rojekê lêkolîn ligel wan bê kirin

Serokê Komîteya Çaksaziyê herwiha got "Ez naxwazim hincetan bo wezîrekî bînim, lê gelek tişt hatine encam dayîn haya wezîr jê nebû, berpirs heye qet rojekê ji rojan bawer nedikir ku wê lêkolîn ligel wî bê kirin, derbarê projeyekê ku wî bi şêweyeke neyasayî daye kesekê." Herwiha got "li Kurdistanê niha mafya avabûye, hin kes hene destê wan di gendeliyê de heye, lê ji aliyê kesekî xwedî post û dereceyeke bilind tê parastin."

### Karkirina li ser zêrevanan didome

Biryareke din a Serokê Herêma Kurdistanê taybet bû bi meseleya organîzekirina zêrevanên berpirsan. Peyvdarê Komîteya Çaksaziyê got "Kar heta niha bi hûrbînî li ser vî babetî tê kirin, bo vê mebestê jî li ser astê Wezareta Hundir û Pêşmerge komîteyek hatiye avakirin."

Dr. Omêd di axaftina xwe de ronkir ku "Biryareke din a Serokê Herêma Kurdistanê derbarê prosesa çaksaziyê danana peymangeha dadweriyê bû, ew peymangeh niha hatiye damezirandin û ji aliyê Civata Wezîran rêvebirek jê re hatiye danîn ku ew jî Hakim Sîrwan e."

### Mafyayê van karan kiriye

Serokê komîteyê derbarê wê yekê ku hin kes dibêjin endamên Komîteya Çaksaziyê ya Serokatiya Herêma Kurdistanê bi xwe jî têkildarên gendeliyê ne, vêca wê çawa mesela gendeliyê çareser bikin, got "Vê komîteyê wê gelek dijminên xwe hebin, ev tiştekî realist e. Ez bêyî dudilî dibêjim mafyayek heye ev karan kiriye, ev gendelî encama liserhevketina çendîn salan e, ne nû ye û gelekî zêde ye jî, xelk hene bi başî behsa karê komîteya me dike û xelk jî hene zerar li berjewendiyên wan ketine, loma ew bi xirabî behsa karê komîteya me dikin. Kesên vê axaftinê dikin bila bi belge axaftinên xwe bikin. Kes hene heta niha axivîne, lê axaftinên wan bêyî belge bûn." Wî di dirêjahiya axaftinên xwe yên derbarê hebûna mafyayekê li pişt gendelkariyan got "Ma mafya tê çi wateyê? Mafya heye, mafya ew e ku yek bikare kesekî biparêze."

** Musatehe: bikirêdayîna perçeke erdê dewletê ji bo demekî diyarkirî.*

### Mamosteyê Zanîngeha Dîcleyê yê beşa Psîkiyatriyê, Prof. Dr. Aytekin Sir:

# Yek ji sedemên kuştina jinên herêma me însest e

*Bajarê Batmanê di dawiya salên 90î û destpêka salên 2000î de bi bûyerên xwekuştina jinan ketib1u rojevê. Li gor pisporan Batman di mijara xwekuştina jinan da li dû paytexta Çînê Pekînê tê; li van herdu bajaran hejmara jinên ku xwe dikujin an jî bi rêyên ne diyar tên kuştin, pir zêde ye. Mamosteyê Zanîngeha Dîcleyê yê beşa Psîkiyatriyê Prof. Dr. Aytekin Sir ku derbarê xwekuştin û kuştina jinan ji aliyê xizmên wan ve, çendîn lêkolîn kirine, ragehand ku jin xwe nakujin, lê tên kuştin û weke ku ew xwe dikijin tên nîşandan. Sir sedemê kuştin û xwekustina jinan bi pirsgirêkên civakî ve girê dide û dibêje "ensest sedemek girîng e di kuştina keçan de."*





Prof. Dr. Aytekin Sir

**Batman, piştî kuştinên ku kujerê wan ne diyar in bi kuştina jinan kete rojevê. Di meha borî de tenê di hefteyek de 8 jinan li Batmanê hewl dan ku xwe bikujin û laşê keçeke 11 salî jî bi darê ve daleqandî hat dîtin. Li Batmanê jin çima xwe dikijin?**

Belê, ev pirsgirêkek me ya girîng ya civakî ye û weke birîneke nû ye ku xwîn jê tê. Lê herêma me hejmara xwekuştina jinan du car ji xwekustina mêran zêde ye. Di lêkolînên me de derket holê ku rewsek ji ya cîhanê cûda li vir heye. Li cîhanê hejmara xwekuştina mêran 2-4 caran ji hejmara xwekuştina jinan zêdetir e, lê li cem me rewş berovajî ye. Tişta balkêş ew e ku yên hewla kuştina xwe dikin temenê wan di navbera 15-24 salî de ye. Min heta niha tenê li deverekî dît ku hejmara xwekuştina jinan ji ya mêran zêdetir e, ew jî Pekîn e. Li wir zexta civakî li ser jinan pir zêde ye, ango rewsa wir disibe rewsa vir.

Em werin ser mijara ew keça 11 salî ya ku xwe bi dalê ve daleqandibû. Zarokek 11 salî xwe zû bi zû danaleqîne, em guman dikin ku ev bûyerek xwekuştinê be. Ez senaryoya ku texmîn dikim bêjim: Gelo dibe zilamek dest dirêjî wê kiribe? Divê ev tişt bên zelalkirin. Em di demên borî de rastî gelek bûyerên ensestê (destdirêjkirina cînsî ya nav malbatê) hatin, di nava xizman de her çiqas bên veşartin jî, bûyerên ensestê gelek çêdibin. Carina ap, xal, bira û carina jî bav destdirêjiya keça xwe dike û dema ku keçik dibe ducanî jî tê kuştin.

**Hûn di demên dawî de rastî bûyerên wiha hatin?**

Belê, ez ji we re behsa bûyerek ya sala borî bikim. Keçeke ji Amedê anîn cem me, bavê wê destdirêjiya wê kiribû. Keik 12 salî bû û ducanî bû. Meclîsa malbatê biryar dabû ku wê bikujin. Me keçikê li cem xwe parast, zaroka xwe anî dinyayê û me zaroka wê da malbatek ku lê xwedî derkevin û me ji bo keçikê jî nasnameyeke nû amade kir û li bajareke din me wê niştecîh kir. Ew keçik ez hêvî dikim ku ji kuştinê xilas bûbe.

**Li gor we, wekî din sedemên kuştin û xwekustine keçan çi ne?**

Beriya hertiştî divê ez bêjim ku jin xwe nakujin, ew bi pilan tên kuştin û weke ku xwe kuştibe tên nîşandan. Sedem ev in:

***1- Sedemên namûsê:*** *Eger keçikeke ciwan hevalekî xwe yê xort hebe, ev dibe sedem ku ji bo namûsê bê kuştin.*

***2- Zewaca pirjînî:*** *Keçên ciwan yên 15-16 salî bi pereyekî zêde bo zilamên 60-70 salî tên firotin û dibin jina duyem an jî ya sêyem.*

***3- Tûndiya bê dawî:*** *Li gimberê jinan di civakê de tûndiyek pir zêde heye, lê ev wek ku tişteki normal be tê dîtin. Ji wan re tê gotin, bavê te ye, birayê te ye, zilamê te ye, tişt nabe...*

***4- Koçberî:*** *Kesên koçî deverekî dikin li wir rastî çandeke cûda tên. Paşê di navbera nifsan de cudahiyên mezin derdikevin holê. Malbat li himberê van çand û jiyanên cuda dikeve tengasiyê.*

**Ev jin çawa, bi çi rengî tên kuştin?**

Li herêma me pirî caran bi jefrê kec û jin tên kuştin. Meclîsa malbatê dema ku biryara kuştina jinekê dide, pêşî di axurê de, di odeyek tarî de derî li ser digirin. Demekê nan û avê nadinê. Paşê nanê jehrkirî didinê, ev jî pirî caran wiha dibe, dermanê mijkan an jî jehriyek din dixin nava nan û xwarinê û didin jinê. Piştî ku jin an jî keç dimire, malbat agahî dide polîs û dozger û dibêje ku "Keça me dermanê misk xwariye û xwe kustiye", yan jî "Keça me pir heban xwariye û xwe kuştiye". Ev rêbaz pirî caran tê bi kar anîn.

**Meclisa malbatê dema biryara kuştina jinekê dide, derî li ser digirin û nanê jehrkirî didinê. Dema ku jin dimire malbat agahî dide polîs: “Keça me derman xwariye û xwe kuştiye“**

**Rêbazên din çi ne?**

Ji bilî jehrkirinê rêyek din a kuştina keç û jinan heye, ew jî wiha ye. Jina ku biryara kustina wê hatiye dayîn, ji aliyê du sê kesan ve tê girtin û werîs di ustiyê wê de derbas dikin û paşê dibêjin, “Wê xwe daleqandiye”. Carina jî jin ji aliyê çend kesan ve ji serê xanî, ji balkonê tê avêtin û dibêjin, “Wê xwe ji banî avêtiyê”. Cûrek din a kuştina jinan heye, ew jî demance ye. Tenê guleyek di serê wê de diteqînin û wê dikujin û paşê demancê dixin destê wê. Xetera herî mezin ew e ku hemû van kuştinan bi rêyên veşarti û bêdengiyek kûr de pêk tînin. Kes giliyê kesek din nake, hev diparêzin.

**Ji bo pêşgirtina van kuştinan divê çi bi kirin?**

Me bi salan lêkolînan kirin û em gihan vê encamê: Perwerdeya jinan. Ez di zimanekî vekirî, bi hêsanî dikarim bêjim ku civak tenê bi perwerdekirina mêran nayê guhertin. Ji bo civak biguhere, divê keçik jî bên perwerde kirin. Nîqaşa pirsgirêkên civakî têr nake, ya girîng ew e ku ew careseriya van pirsgirêkan bibînin û biparêzin. Divê her kes hişyar be.

***Hevpeyvîn: Medya Denîz***



# Kurd dostê rasteqîne yên Îsrailê ne*

**Eyûb Nûrî**

Ez xelkê Rojhilata Navîn im, lê bi ti awayekî dilê min bi serhildanên welatên erebî û guherîna rêjîmên wan ne xweş e. Tiştekî baş e Ereb rast bûne û dîktatorên xwe davêjin, lê ditirsim şoreşa wan ya îro sibe ziyanê li tena demokrasiya deverê bide ku ew jî Îsrail e. Ger serhildanên Ereban demokrasyê bînin deverê, pêşwazî li wan dikim, lê bi baweriya min hinek ji wan tenê bo wê yekê rêjîmên xwe dirûxînin ku destê wan vala be û rojekê ji rojan êrîşî Îsrailê bikin.

Dibe ku kesek biperse ka ji ber çi ez wisa di xema Îsrailê de me, bersiva min jî ew e ku çend xalên hevbeş ên gelê min ligel xelkê Îsrailê hene. Ez Kurdê Başûrê Kurdistanê me. Ji wextê ku tê bîra min gelê min ji aliyê heman wan rejîman ku soz dane Îsrailê jinav bibin tê serkutkirin û zindankirin û kuştin. Tenê di rojekê de di sala 1988ê de artêşa Saddam Huseyîn bi bombeyên kîmawî êrîşî bajarê min, Helebçe kir û 5 hezar jin û zarok û mêrên bêtawan kuştin. Rêjîma Sûriyê înkara hebûna sedan hezar Kurdan dike li Sûriyê û di 30 salên borî de rojek nebûye ku rejîma Îslamî ya Îranê jinek yan mêrekî Kurd îdam nekiribe û negirtibe.

Îsrail tena demokrasî ye li Rojhilata Navîn. Bo me Kurdan ku hê jî dewleta me tune, Îsrail çavkaniya îlhamê ye. Em ji kûrahiya dil baweriya me wisa ye ku Cihû hêjayî wê yekê ne dewleta wan hebe, eger rojekê ji rojan me jî dewleta xwe ava kir, hez dikim li ser şêwaz û sîstema Îsrailê bê avakirin, ne ku ti yek ji cîranên me. Cîranên me dewletên polîsî ne. Hevwelatiyên wan tên zindankirin û îşkencekirin û kuştin. Dîktatorên wan bi kêfa xwe jiyanê didin û distînin. Bi şêweyên herî hovane dengê nerazîbûnê serkut dikin. Lêbelê gava dinêrim û dibînim li Îsrailê siyasetvanên wan yên di pileyên herî bilind de tên dadgehkirin û lêpirsîn ligel wan tê kirin, hevwelatiyên Îsrailê bêyî tirs rexneyan li hikûmeta xwe digirin û medya û ra û nêrîn azad in, zêde xema çarenivîsa Îsrailê dixum.

Gava dibînim xwepêşanderên ereb sloganên tije kîndarî li himber Îsrailê bilind dikin, nikarim bo rûxandina Husnî Mubarek û Zênelabidîn ahengê bigerînim. Dibe ku di ser xelkên rojava re derbas be, lêbelê eger erebî bizanî û bixwînî, dibînî ku beşekî zêde yê serhildan û şoreşên wan dijî Îsrailê ne, weke ku Îsrailê ev millet zindan kiribin û çewisandibin.

**Pêwendiya Îsrail û Tirkiyeyê bi milyonan Kurdên vî welatî ji xwe hêrs kirine**

Bi baweriya min pêwendiya Îsrailê ligel hinek cîranên xwe weke Misir û Urdunê, hertim pêwendiyeke rûkeş bûye. Xelkê van herdu welatan xewna jinavbirina dewleta yahûdî dibînin. Ne ku tenê Misir û Urdun, bigire ger hemû welatên erebî jî peymannameya aştiyê ligel Îsrailê îmze bikin ti sûda wê tune, ji ber xelkên wan dijî Îsrailê ne.

Tirkiye mînakeke din e. Pir mixabin pêwendiya navbera Îsrail û Tirkiyeyê milyonên Kurdên wî welatî ji xwe hêrs kirine. Tirkiye welatekî dîndar e û bêdengiya wan beramber Îsrailê tenê ji ber ew bû ku generalên leşkerî yên sekûler fermanrewayên wî welatî bûn. Vêga ku çend sal in hikûmeteke îslamî hatiye ser kar, ti welatekî din yê Rojhilata Navîn qasî Tirkiyeyê şerxwazî li himber Îsrailê nîşan nedaye.

Lêbelê di vî alî de Kurd zêde aştîxwaz in li himber Îsrailê. Berovajî welatên erebî ku serokên wan peymanên aştiyê îmze dikin û xelkên wan aciz dibin, Kurd hem weke xelkê û hem hikûmet zêde rêza wan heye bo gelê Cihû û ola wan. Li Kurdistanê xelk bi dilê tije xem û çavên şil qala cîranên xwe yên kevin ên Cihû dikin. Li Ewropa û Amerîka yasa û destûr nahêlin kes dijî Cihûyan hestên xwe derxîne, lêbelê li Kurdistanê li cem xelkê rêzeke ciddi heye li himber Îsrailê. Li gelek welatên Îslamî de hinek kes peyde dibin ku bi kêfxweşî pêwendiyê bikin bi her artêşekê re ku bêjin êrîşî Îsrailê bike. Li Kurdistanê jî ez piştrast im hinek kes hene ku bêyî dudilî diçine rêza artêşa Îsrailê bo bervanîkirina wê. Kurd qurbaniyên jenosîd û çend sedsalên çewisandin û koçberiyê bûn, lewma ji her milletekî din baştir ji dewleta Cihûyan fahm dikin.

Rojekê di nava bazara bajarekî Kurdistanê de ez ligel hevkarekî xwe yê Filistînî ku li Ewropa dijî, ser rê diçûm. Em çûne dikanekê hinek çerezan bikrin, her gava xwediyê dikanê zanî hevalê min Filistînî ye, berê xwe dayê û got: “Tika ye ewqas rokêtan navêjin Îsrailê û dev jê berdin.”

Careke din ji Bexdayê vedigeriyam Kurdistanê. Ew kesê ku li cem min rûniştibû mêrekî kurd ser û rî sipî bû. Di sala 1956ê de hatibû wergirtin weke serbaz û ji Îraqê şandibûn ser sînorê Îsrailê li Urdunê. Li wir serbazên Ereb jê hers bibûn û gotibûn çima teqe li Îsrailê nake, wî jî bersiva wan dabû: “Ev ne şerê min e û ti kêşeya min ligel Îsrailê tune.”

Ev pêwendiya nêzîk di navbera Kurd û Yahûdiyan de ne tiştekî nû ye. Di vê demê de di nava kevintirîn kitêbên pîroz ên Yahûdiyan de ku berî 3 hezar salan hatine nivîsandin, min dît ku serokên Cihûyan ji lawên xwe re dibêjin xwe û mal û zarokên xwe amade bikin û herin welatê Mîdya (Mad) çimkî tenê li wir jiyana wan parastî ye. Ger binêrî dibînî ku sêyemîn xeta sirûda niştimanî ya Kurdî dibêje: “Em lawên Mîdya ne.”

Rojhilata Navîn weke giravekê ye ku Kurd û Yahûdî tê de asê mane. Daku zindî bimînin pêwîst e destê hev bigirin. Ew berê ku dever berbi wê diçe me neçar dike em ji hev nêzîk bibin. Ne girîng e dahatû çendî tarî û ne diyar dibe, Kurdistanê û dewleta Yahûdî bi piştgirîkirina hev derbas dibin.

** Ev gotar ku di beşa îngilîzî yê malpera Rûdawê de hatiye weşandin, heftiya borî rojnameya The Canadian Jewish News a Kenedî de ji Rûdawê wergirt û belav kir.*



# Bedela endamtiya NATOyê

**Mahmut Kilinç**

Endamtiya NATOyê (North Atlantic Treaty Organization) di dîroka Komara Tirkiyê (KT) da mîladek e. Piştê Herba Duyem ya dinyayê, li Tirkiyê pêvejoya “fireh partiyî” destpêkir, çend sal dûre endamtîya vê dewletê ya Konseyê Ewrupa û paşê jî, di sala 1952’an da endamtîya NATOyê li ser dîroka Komara Tirkiyê diyarker bû. Eger mirov bixwaze girîngiya tiştekî, biryarekî an pêvejoyekî bibes fam bike, hewce ye mirov berevaciyê wî tiştî jî bifikire. Ango ji mînaka me, eger Tirkiyê nebûya endamê NATOyê, me yê Tirkiyek çawa bidîta?

Tirkiyê bi endamtîya NATOyê bi Dinyaya Rojava ve, taybetî bi dewletên Ewrupî û ABDê ve, peywendiyên pirralî damezrandin.

Hingê, dema Şerê Sar bû, bi endamtîya NATOyê mebest di başûr da parstina ewlekarîya Ewrupayê bû, bi vî aveyî peywira jendarmatiya Rojava da ser milê xwe, bona bercewendiyên siyasî, aborî û eskerî erdnîgarîya Anadolu wek baregehekî pêşkêş kir. Bi ABDyê û giştî bi Rojava ve peymanên eskerî û aborî hatin tanzîm kirin, derîyên nûh jê re vebûn.

Bedela vê hevkarî û bercewendiya stratejîk ji roja ewil ve li ser milê gelê Kurd e. Li beramberê jendermatiya Rojava têkoşîna miletê Kurd di her demê da serkut kir, lê ji kesî ti deng derneket. Bi giştî Dinyaya Rojava û NATOyê çavên xwe li qirkirin, qetlîama û pişavtina miletê Kurd ya vê dewletê re girtin. Heta îro, li dijî vê hovitîyê taybetî ji NATOyê carek tenê jî deng derneketiye. Heçku em dizanin, ku bi navê “têkoşîna li dijî terorê” KTyê, li bakurê Kurdistanê, bi derfetên NATOyê sûçên li dijî mirovahîyê û sûçên şer kirin/dike.

Îro, carek din Tirkiyê dixwaze li li ser sînorê rojavayî bakurê Kurdistanê, li Kurecik’a Meletiyê baregehê NATOyê yê ji berê da heyî wek “mertalên moşeka (fuze)” veguherîne, radarên NATOyê yên nuh li baregehê biheşidîne. Bi qasî ku tê ragehandin, sistema ABDyî ya “şîyarîya lezgînî” dê bête bicih kirin, ango bi hesabê vana; dema ku ji Îranê moşek ji rampayên xwe derketin, nêşitên wê dê di radara Kurecik da bête dîtin, ji ber sitem entegre ye, di heman demê da navenda sistemê ya li Polanya’yê (hinek kes dibêjin Romanya) dê agahdar bibe û ewê fermanê bide keştiyên ABDê yên li rojhilatê Behra Sipî û ji keştiyan moşekên parastinê dê ji rampayên xwe berve Îranê birêkevin û moşekên Îranî li esman berhewa bikin!

**Bedela vê hevkarî û bercewendiya stratejîk li ser milê gelê Kurd e.**

Ev hemî kar di hundirê du an sê xulekan da diqewime.

Ji hemî axaftin û peyamên kesên têkildar dixuye, ku ev sitem li dijî Îranê tê heşidandin. Her çiqas ji xwe mukar nayên jî armanca vê sistemê ewil parastina Îsrail e. Li hêlekê li dijî Îsrail gefên şer têne xwarin, li hêla din cih dide sistema parastina Îsrail ê. Siyaseta hundir û populizm wisa dive.....!

NATO û Rojava bercewendiyên xwe yên li herême diparêzin, hikûmeta Tirkiyeyê wek hêmanekî di siyaseta hundir de bikar tîne, lê bedela wê li ser milê gelê Kurd e. Nêzikî mehekê ye ku firokên şer çîya û gundên Kurdistanê bombebaran dikin û hikûmeta Tirk xwesteka çekên ABDê yên li Îraqê û predatora dike, dixwaze ji konjuktûr bêhtirîn sûde werbigire.

Bi vî aveyî Rojava, bi mebesta bercewendiyên xwe bêhtir rû dide KTyê, ev siyaset kêrî aştiya navxweyî ya Tirkiyê û bi giştî ya herêmê naye, berevacî, ev dibe sebeba bêramiyê.

## Li cîhanê xwarina zêde ji birçîtiyê zêdetir xelkê dikuje

**Rûdaw –** Hevbendiya Komeleyên Xaç û Heyva Sor derbarê qelewî û birçîbûnê li cîhanê raportek belav kirin ku agahiyên balkêş tê de hene.

Di raporta ku beriya du heftiyan hat weşandin de, tê eşkere kirin ku hejmara qelewên cîhanê zêdetir e ji kesên ku ji ber kêmbûna xwarinê rastî bîrçîbûn û xwarina nebaş hatine.

Hevbendiya ku navenda wê li Cenevreya Swîsreyê ye, di raporê de karesat, kêşeya xwarinê û jiyana hejaran kiriye babet, herwiha bilindbûna nirxê xwarinê.

Hejmara qelewan ji birçiyan zêdetir e

Li gor îstatîstîkên raporê, di sala 2010ê de yek milyar û 500 hezar kes li cîhanê rastî qelewbûnê hatine, di demekê de ku di heman salê de 925 milyon kes ji ber birçîbûnê êşane û rastî kêmxwarinê hatine.

Emîndarê giştî yê hevbendiyê derbarê encamên raportê de got ku ew gihiştine wê encamê ku ji sedî 20ê xelkê cîhanê qelew in û ji sedî 15 jî birçî ne, ev jî belgeya hebûna kêşeyekê ye ku ew jî bazaar xwarinê ye, nekû nebûna xwarinê li cîhanê.



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1- Şahê maran, serokê maran – Yarmetî, alîkirin. 2- Belê, temam – Li bakurê Kurdistanê gundek (berepaş) – Li bajarê Medînê çiyayê hecî tewaf dikin. 3- Hîlekar, fêhlbaz, sextekar – Bi xwe de kir, gû kir – Kesên ji Amedê. 4- Gotin, tefsilandin, anîna ser zimên – Zo, du, kolana erdê. 5- Li jiyanê, ne mirî, sax (berepaş) – Bajarekî rojhilatê Kurdistanê. 6- Di trafîkê de nîşana Tirkiyê. 7- Heta heta, bê dawî, heta roja qiyametê. 8- Mirina nebatî,ne mirî ne sax (berepaş) – Bandor, giranî. 9- Mehel, bend, hêl (berepaş) – Şêranîyek ji sindik û şekir. 10- Li Kurdistanê herêm û çiyayek (berepaş) – Rê, rêbaz, xêz (berepaş).

**Serejêr:** 11- Xwesteka zayendî, hêza seksê – Dewlemendê gund. 2- Xwelî, nîjadê Kurdan – Bêbext, durû, xayîn (berepaş). 3- Mala çûk û teyrikan – Kesên ji Botanê. 4- Cûreyek qumaş, qumaşê bi pirçik û biriqandî (berepaş). 5- Bênamûs, bê ar, bê şeref –Notayek muzîkê. 6- Li Siûdî Erebistanê bajarek – Gazind, lome. 7- Gundên piçûk, gundok (berepaş) – Gotinek ecêbmayînê (berepaş). 8- Na, nabe – Bûyer, qewimandin. 9- Ne xweşik, mekroh (berepaş) – Tuneye, nemaye. 10- Lûle, tiştên ku av tê re dibore (berepaş) – Pîsîtîya dewaran. 11- Notayek muzîkê. 12- Dewletek dagîrkerê Kurdistanê. 13- Armanc, daxwaz. 14- Ezîyet, êş, jan (berepaş). 15- Markayek seetên desta. 16- Çûk û teyrikek zivistanê (berepaş).

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | ■ | | | | | | | |
| 2 | | | | ■ | | | | | | ■ | | | | | | |
| 3 | | | | | | | | ■ | | | ■ | | | | | |
| 4 | | ■ | | | | | | | | | | | ■ | | | |
| 5 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 6 | | | ■ | | ■ | | ■ | | | | | | | | | |
| 7 | ■ | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 8 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 9 | | | | ■ | | | | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | ■ | | | | | | | | | |

**Bersivên hejmara 113**

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | Q | F | R | A | M | Û | Ş | K | ■ | A | L | Î | K | A | R | Î |
| 2 | E | R | Ê | N | Î | ■ | A | R | Î | Ş | E | ■ | E | N | ■ | S |
| 3 | F | A | K | S | K | I | R | I | N | ■ | K | E | F | T | A | R |
| 4 | E | ■ | A | F | ■ | R | I | B | A | K | ■ | Ş | Î | Î | ■ | I |
| 5 | S | A | R | R | Û | ■ | S | ■ | D | ■ | | | | | | |
| 6 | ■ | S | Î | ■ | D | O | T | M | A | N | | | | | | |
| 7 | N | A | ■ | Î | ■ | L | A | Î | M | E | | | | | | |
| 8 | ■ | L | A | Z | G | Î | N | ■ | A | K | | | | | | |
| 9 | P | E | L | O | R | ■ | Î | M | H | A | | | | | | |
| 10 | Î | T | Î | R | O | K | ■ | Î | ■ | Q | | | | | | |

# Tedawiya nexweşiya şekir

Tedawiya nexweşiya şekir di aliyê aborî de gelek îmkanan dixwaze. Li Amerikayê li ser sedemên derketina vê nexweşiyê li ser 50 hezar kêsî lêkolînek hat kirin. Yek ji encamên lêkolînê ew bû ku xwarin bandorek mezin li ser derketin û rêveçûna vê nexweşiyê dike, nemaza xwarina hazir.

**Rewşa îmkanên tedawiya ne xweşiya şekir çawa ye?**

**Dr. Mihemed Deniz:**

Dema ku em li ser vê mijarê rawestin, gelek tişt hene ku em bînin ziman. Di nava 20-30 salên dawî de hinek lêkolîn hatine çekirin. Ya herî giring tedawiya nexweşiya şekir di bin destê şîrketên dermançêker de ye, ji ber wê jî bijîşk giraniya xwe nadin tedawiya bê derman, bijîşk di bin bandora şîrketên dermançêker de ne.



Dr. Mihemed Deniz *

**Bêyî perwerdê çareseriya nexweşiya şekir çiqas bi ser dikeve?**

Bêguman bêyî perwerdê û agahiyên xurt li ser vê nexweşiya giran çareseriyek pir serkeftî ne mumkin e. Li cihê xwe hefteyê 4 caran û her carê 45 deqeyan em nexweşên xwe dawetî vir dikin û wan perwerde dikin: pêwîste çi xwarinan bixwin?, divê çi bikin?, derman û însulîn bi çi şêwazî bikar bînin? Ji ber ku nexweşiya şekir wisa ye, divê her tiştî bixwin, lê kêm bixwin. Bi taybetî wan xwarinên şekirkêm bixwin, xwarinên bi rûn pir nexwin. Heta dikarin giraniya xwe bidin xwarinên bêyî goşt, çiqas bikarin, ewqas bixwin. Lê di fêkiyên wek mûz, tirî, sêv, ananas, zebeş û gelekên din de pir şekir heye, divê wan jî pir nexwin.



**Tedawiya bê derman çawa ye?**

Perwerde di bin kontrola pisporê nexweşiya şekir de tê kirin. Kesê ku perwerdê dibîne derbarê lebata zêde, xwarin û vexwarinê de dibe xwedî agahiyên xurt. Dema ku zanibin bandora xwarin û vexwarinê li ser nexweşiya şekir zêde heye, hingê li gor wê tevdigerin. Nexweş divê ku şêweyê jiyana xwe biguherîne, dibe qebûl bike ku wekî berê nikarê bijî. Wextê jiyanek bê ser û ber bijî, ev di çareseriya nexweşiyê de jî keleme. Li vir dixwazim çend mînakan bidim: Eger kesek rojê 4 seatan li televizyonê binêre, 8 saetan rakeve, 3 seatan li ber komputerê rûne bi dilê xwe xwarina xwe bixwe, bi wî awayî nikare nexweşiyê çareser bike. Dema ku em ji jinê me yên kurd re dibêjin divê hûn li xwarina xwe muqate bin, dibêjin welle tenê dîlimek nan dixwim. Eger ku nexweş însûlin li xwe dixe, divê bi rêk û pêk li xwe bixe. Ewê însûlin bikar anîn jî, divê bi rêk û pêk biçin cem bizîşk. Armanc û hedefa me ew e, eger ku nexweş li me guhdar bikin, em ê bi hevre bighijin encamekî baş.

**Nexweşên şekir divê her tişt bixwin, lê kêm bixwe. Xwarinên bi şekir û rûn kêm bixwin.**

### Çend şîret ji bo başbûna we

Kesê ku bikaribe kîloyên xwe ji sedî 5 kêm bike, nexweşiya şekir ji sedî 58 kêm dike. Kesê ku lebata xwe zêde bike û bi lebata xwe 5 kîlo kêm bike, nexweşiya şekir ji sedî 74 kêm dike. Yê di hefteyê de 4 saetan lebatê bike, dikare ji sedî 80 nexweşiya şekir kêm bike. Dawiyê dîsa ez dibêjim: ew nexweşên şekir dema ku li xwarina xwe miqate bin û sporê bikin, hingê ew dikarin pêşiyê li nexweşiya xwe bigrin.

*Amadekirin:*
*Zelal Çelîk*

** Dr. Mihemed Deniz ji Bakurê Kurdistanê ye, li Almanya dijî, pizîşkê giştî ye û bi taybetî bi nexweşiya şekir re mijûl dibe.*

Tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî?
Ji me re bişîn: info@rudaw.eu







# Şara Zîn hem ji muzîk, hem ji çêkirina wêneyan hez dike

Navê min **Şara Zîn** e, ez heşt salî me. Ji bakûrê Kurdistanê, devera Tatwanê me û niha li Almanya, li bajarê Kolnê dijîm. Ez gelekî ji muzîkê hez dikim, lewra diçim kursa muzîkê û li wir fêrî piyano dibim. Herwiha ez gelekî ji çêkirina wêneyan jî hez dikim. Ez pir jî guhdariya çîrokan dikim, hem çîrokên kurdî, hem jî yên almanî dixwînim û guhdar dikim, bi taybetî jî çîrokên Astrid Lîndgren pir hez dikim, piranî bi van çîrokan dikevim xewê.
Dema ez mezin bibim, gelek xwestekên min hene ku ez bikim. Dema ez mirovên nexweş dibînim, dixwazim alîkariya wan bikim, wê demê dixwazim bibim doktor. Hinek caran jî dixwazim pirsgirêkên ajalên nexweş çareser bikim, lewra dixwazim bibim doktorê ajalan. Lê van rojan hizra min hinekî zelaltir bûye û dixwazim bibim mamoste.

# Welatê me Bedlîs



Kela Bedlîsê



Dibistana Şerefxan Bedlîsî

Bajarê Bedlîsê dikeve bakurê Kurdistanê û beriya zayînê bi zêdetir ji 2000 salî hatiye avakirin.
Bedlîs, ji ber ku dibistana olî li vir bûye, herdem navendeke rewşenbîrî ya girîng bûye û nivîskarên navdar weke Şerefxanê Bedlîsî ku xwediyê pirtûka navdar "Şerefname" ye, ji vî bajarî bûn. Herwiha Kela Bedlîsê jî îro weke şûnwarek dîrokî hîn jî dimîne. Ji ber ku perçekî mezin ji Gola Wanê dikeve sinorê Bedlîsê û qeza Tatwanê jî (ku girêdayî Bedlîsê ye) dikeve ser kenarê vê golê, ev jî balkêşiyekê ji bo tûrîstan çêdike.



Amedekirina rûpela zarokan:
Sevda Şafîk



## 12 cudabûnên navbera wan bibîne





## FÊRÎ KURDÎ BIBE

| Q | ق | k | ک |
|---|---|---|---|
| qul | کون بوون | kul | بریندار |
| qalkirin | باسکردن | ka | کا |
| qirkirin | لەناوبردن | kilkirin | چاوکلدان |
| qet | هەرگیز | ket | کەوتن |